

وەزیری ئاوەدانکردنەوەی کوردستان:

12

تا پێنج ساڵی دیکە کوردستان کرێچی تێدا نامێنێ



Encamên yekem tîrûpişka Rûdawê diyar bûn: 2 Kurdên "Diyaspora" belaş difirin Kurdistanê...

rûpel 2

Hejmar / Nr. 124
01 Kanûn / Dezember 2011

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

# Komkujiya Dêrsimê

## Lêborîn an karta siyasî?

3/4 »



Serokwezîrê Tirkiyeyê Erdogan di civînek rêvêbirên AKPê de belgeyên derbarê Komkujiya Dêrsimê de nîşan dan û ji bo bûyerên li Dêrsimê lêborîn xwest.

Wêneyek ji dema koçkirina Dersimiyan







Great Britain



www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

# Encamên tîrûpişkê diyar bûn



Wêne: Rûdaw

**Koln (Rûdaw) -** Hefta borî roja 29ê Mijdarê 2011 li nivîsingeha Rûdawê ya Kolnê Yekemîn Tîrûpişk Rûdaw hat kişandin û du xwendevanên me bûn xwediyê xelatê. Xwendevanekî Rûdawê ji Swêdê û yek ji Kolnê bilêtên firokeyê bo Kurdistanê qezenc kirin.

Yekem tîrûpişka ku li buroya Rûdawê hat lidarxistin, ji aliyê keça kurd ya endama Partiya Çep a Almanyayê "Die Linke" Derya Kiliç hat kişandin û editorên Rûdawê jî çavdêrî kirin.

Xelatên Yekemîn Tîrûpişka Rûdawê du bilêtên firokeyê bûn û ev bilêt yek ji bo çûn û hatina Amedê û ya din jî bo çûn û hatina Hewlêrê bû. Bo beşdariya tîrûpişkê pêwîst bû her xwendevanekî Rûdawê ji 4 hejmarên Rûdawê yên cuda 4 kuponan bicivînin û bi postê rêkin navnîşana Rûdaw GmbH li Kolnê. Tîrûpişka Rûdawê berdewam dike û hemû abone û xwendevanên Rûdaw dikarin beşdarî bikin. Tîrûpişka duyem jî di destpêka sala 2012ê de tê kişandin. Derbarê agahiyên tîrûpişkê xwendevanên Rûdawê dikarin bi telefon û e-mailê bi Rûdawê re têkevin pêwendiyê.

Di yekemîn tîrûpişkê de 118 xwendevan beşdar bûn û kuponên xwe şandin navnîşana Rûdawê. Di encama kişandina tîrûpişkê de yek ji Swêdê û yek ji Kolnê, du xwendevanên me bilêtên bo Kurdistanê qezenc kirin.

### Kê bilêt qezenc kirin?

***Muzaffer Özgür:*** *Kurdekî rûniştevanê bajarê Almanya Kolnê ye û bilêta çûn û hatina bi firokeyê bo Amedê qezenc kir.*

***Xalîd Bozorg:*** *Rûniştevanê bajarê Swêdê Sundibyberg e û bilêta çûn û hatinê bi firokeyê bo Hewlêr qezenc kir.*

# 2 xwendevanên Rûdawê bilêtên firoke qezenc kirin



**Xwendevanê Rûdawê Muzaffer Özgür li navenda Rûdawê li bajarê Kölnê bilêta qezenckirî wergirt.**

# Sê Kurdên Feylî devên xwe dirûtin

## Li hemberî siyaseta penaberan li Awistralyayê, penaberên kurd tenê yek rê dîtin, ew jî durûtina lêvên xwe. Penaberan sond xwarine ku çalakiya xwe bi dawî neyînin, heya ku daxwaza wan neyê bicîhanîn



**Rûdaw –** Li gor raporeke rojnameya Daily Telegraph a awistralî, sê penaberên Kurdên Feylî ji ber rewşa wan a xirab li kampeke penaberan li bajare Darwînê li bakurê Awistralyayê, devê xwe dirûtine û du penaberên din jî heb xwarine û bo nexweşxaneyê hatine şandin.

Li gor gotina çalakvanê parastina mafên mirovan li Awistralyayê, Ian Rintol, ew her pênc penaberên Kurd nêzîka 18-22 meh in di nava wê kampê de dijîn û daxwaza wan ya wergirtina mafê penaberiyê ji aliyê hikûmeta Awistralyayê hatiye redkirin û heya niha jî nehatine dersînorkirin.

Berdevka Wezareta Karûbarên penaberan a Awistralyayê Sandy Logan ew nûçeya derbarê çalakiya ciwanên Kurd de piştrast kir û daxuyand ku sê penaberên Kurd devê xwe dirûtine û du penaberên din jî li bin çavdêriya pizîşkî de ne. Sandy Logan diyar kir ku wezareta wan ev pêşniyar daniye pêşber wan hersê penaberên Kurd ku eger ew bo kampeke din bên veguhastin, ew devê xwe vedikin, lê penaberan ev pêşniyar red kirine. Sandy Logan herwiha got ku "Ew penaber pêkut in li ser nîşandana nerazîbûna xwe û sond xwarine heya ku bersiva wan derbarê çarenivîsa wan de neyê dayin, ew devên xwe venakin."Partiyên opozisyonê yên Awistralyayê jî daxwaz kirin ku di demeke herî zû de lêkolîn bê kirin, piştre jî çend rapor belav bûn ku qaşo bûyerên şîdetê di nav kampên penaberan de zêde bûne.

Yehya Silo




**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

Beriya ku Kemal Kiliçdaroglu wek rojnamevanek bi Îhsan Sabri Çaglayangil re biaxive, di sala 1987ê de çûye cem Mehmet Bayrak û belgeyên komkujiya Dêrsimê jê xwestin.



# Kiliçdaroglu belgeyên Dêrsimê ji min xwestin

**Mehmet Sebatli**

Dîrokzanê kurd Mehmet Bayrak beriya 30 salan dest bi lêkolînên li ser Dêrsimê kiriye. Di van salan de wî bi dehan belgeyên veşartî derxistine holê û di çendîn pirtûkên xwe de jî hinek beş ji van belgeyan weşandine. Bayrak dide zanîn ku bûyerên ku li Dêrsimê pêkhatine û di destpêka salên 1930yî de hatine pilankirin û bi raporên Îsmet Înönü û Celal Bayar çarçoveya wan hatiye diyar kirin û di salên 1937-38ê de tişta ku hatiye pêkanîn rasterast komkujî ye. Bayrak lêborîna Erdogan girîng dibîne lê dibêje *"Mirov nikare bêje ku dewlet bi paşeroja xwe re rûbirû dibe"*. Bayrak herwiha got ku Serokê CHPê Kemal Kiliçdaroglu beriya 24 salan çendîn belge jê xwestine, lê neweşandine.

**Em ji paş ve destpê bikin. Serokwezîrê Tirkiyeyê hefta borî ji bo bûyerên Dêrsimê yên salên 1937-38 li ser navê dewletê lêborîn xwest. Gelo hûn vê helwesta Erdogan rasteqîn dibînin?**

Tiştê herî girîng di axaftina Erdogan de ew bû ku bûyer wek komkujî binav kir û pirtûka Necîp Fazil Kisakurek jî weke çavkanî nîşan da. Cara yekem e ku rayedarê dewleta tirk li derveyî îdeolojiya fermî wiha diaxive û lêborînê dixwaze, lewma ez vê helwestê girîng dibînim.

**Gelo mirov dikare bêje dewlet bi paşeroja xwe re rûbirû dibe?**

Ji bo mirov karibe wê yekê bêje, divê mirov pir optîmîst be, lê ez ne di wê baweriyê de me ku dewlet paşeroja xwe ronî bike û vê helwestê ji bo hemû bûyerên trajîk nîşan bide.

**Baş e, Erdogan bo çi axaftinek wiha kir?**

Beriya her tiştî Erdogan xwest ku ji bûyerek dîrokî bo siyaseta rojane sûd werbigre, bi vê pêngavê dixwaze ku CHPê û serdema wê ya yekpartî rexne bike û lawaz bike. Weke tê zanîn CHPê îsal li Dêrsimê du parlementer derxistin û ligel hemû siyaseta înkarê û komkujiyê hêjî ev partî li Dêrsimê xwedî hêz e. Lê Erdogan bi vê gavê pêvajoya lawazbûna CHPê ya li Dêrsimê vekir.

**CHP jî xuyaye ketiye rewşeke xirab û nikare siyasetek balkêş bimeşîne.**

Belê, CHP û serokê wê yê Dêrsimî Kiliçdaroglu li şûna ku bûyerên Dêrsimê ronî bikin û lêborînê bixwazin, gotinên çewt û trajîkomîk dikin ku dibêjin haya Mustafa Kemal ji bûyerên Dêrsimê tunebû, tiliya Celal Bayar tê de tune bû û hwd. Bi min re belge hene ku hem beriya komkujiyê û hem jî piştî komkujiyê Mustafa Kemal ji serokwezîrê wê demê Celal Bayar re telegraf şandine, herwiha telegraf û raporên ku Bayar ji Mustafa Kemal re şandine. Mustafa Kemal di telgrafekî de Celal Bayar û artêşê ji ber serkeftina li Dêrsimê pîroz dike.

**Wekî din çi hene di van belgeyan de?**

Di belgeyan de rapora Dêrsimê heye ku di salên 1934-35ê de ji aliyê Fermandariya Jandarmeyan ve hatiye amadekirin. Di vir de behsa hemû eşîretên Dêrsimê yek bi yek tê kirin ka kîjan eşîret bê tunekirin û kîjan eşîret piştî komkujiyê bo rojava bê sirgûnkirin. Min ev belge dane Kemal Kiliçdaroglu.

**Kengî we belge dane wî?**

Kiliçdaroglu di sala 1987ê de li Enqereyê hate cem min û got ku ew derbarê bûyera Dêrsimê de lêkolînekê dike. Min jî ew belge dane wî ku hemû di arşîvên dewletê de veşartî ne û heta niha nehatine weşandin. Kiliçdaroglu piştî ku ew belge ji min standin, çû bi Îhsan Sabrî Çaglayangîl re hevpeyvînek çêkir. Lê ne ew hevpeyvînê weşand û ne jî belgeyên ku min danê. Piştî du salan, di 1989ê de, Çaglayangîl ji bîranînên xwe pirtûkek weşand û tê de behsa awayê kuştina Dêrsimiyan di şikeftan, gundan û devê Çemê Mûnzurê de û herwiha behsa darvekirina Seyîd Riza kir.

**Di wan salan de li Dêrsimê çi qewimî? Sedem çi bû û encam çi derket?**

Dêrsim bi nasnameya xwe ya Kizilbaş û Kurd ti carî nekete bin perê Osmaniyan û hertim ev taybetmendiya xwe parast, lewma hertim weke herêmeke nîv azad bû û parêzgehek pir mezin bû ku ji ya îro firehtir bû. Piştî ku li seranserê Kurdistanê hemû serhildan, tevger û hêz hatin binpêkirin, komara nû ya kemalîst berê xwe da Dêrsimê û di çapemeniyê de Dêrsim weke serê mar dihat binavkirin û digotin, "Divê ev herêm medenî bibe". Beriya komkujiyê hemû çekên gel hatin komkirin. Ji bo kumkujiya Dêrsimê sê beşên artêşê û tumenên siwarî hatin bikaranîn û di dawî de derdora 13 hezar û 160 kes hatin kuştin, 11 hezar û 818 kes jî hatin sirgûnkirin û hejmareke mezin ya keç û kurên sêwî bo malbatên tirk hatin dayîn. Necip Fazil Kisakurek jî dibêje ku derdora 50 hezar kes li Dêrsimê hatin kuştin û Erdogan ji pirtûka wî hinek paragraf xwendin.

**Derbarê navên rayedaran de agahiyên nakok hene. Gelo kê ev komkujî plan kirin, kê pêkanîn? Mînak tê gotin ku wê demê Mustafa Kemal nexweş bû û fermana komkujiyê Celal Bayar daye...**

Divê ez vê yekê zelal bikim ku Mustafa Kemal ji serî heta dawî ji komkujiya Dêrsimê agahdar bû û bi xwe li ser nexşeyê tevgera leşkerî plan kiriye ku ev nexşe û krokî niha li Muzexaneya Trabzonê tên parastin. Ji amadekirina Tunceli Kanunu (Qanûna Dêrsimê, 1935) bigirin heta hemû telegrafên rojane Mustafa Kemal hemû operasyonan birêvebiriye. Wî bi xwe çek dane Sabiha Gokçenê û birêkiriye ku bi firokeyê bombeyan birijîne ser Dêrsimê; piştî pêngave yekemîn bi dawî dibe, ligel komeke leşkerên payebilind Mustafa Kemal bi mebesta vekirina pireya Singeçê diçe Dêrsimê û çavdêriya operasyonê dike. Di nava wê komê Înönü û Serfermandarê wê demê Marşal Fevzi Çakmak jî hene; herwiha Serokwezîr Celal Bayar, Sabiha Gokçen, waliyên herêmê, Wezîrê Karên Hundir Şukru Kaya, Wezîrê Îskanê Alî Çetînkaya, General Abdullah Alpdogan, Mufetîşê Taybet Abidin Ozmen û Îhsan Sabrî Çaglayangîl...

**Em dîsa werin dema dawî. Ji bo mirov bi rasteqînebûna Erdogan bawer bike, divê ew çi bike?**

Eger Erdogan ji bo ronîkirina bûyerên Dêrsimê dilsoz be, divê di serî de arşîva artêşê û hemû arşîvên dewletê ji bo lêkolîner û rojnamevanan veke. Divê lêborîn di gotinê de nemîne, ji bo rûbirûbûnê çi pêwîst be bê kirin û heman helwest ji bo hemû komkujî û bûyerên tarî bên kirin.

Mustafa Kemal ji serî heta dawî komkujiya Dêrsimê birêvebir



Mustafa Kemal û Sabiha Gokçen li Dêrsimê guh didin fermandarekî...



Li gor wêne û belgeyên ku çapemenî diweşîne Mustafa Kemal û Îsmet Înonu di dema komkujiya Dêrsimê de bihevre kar kirine



# Daxwaza lêborînê ya Erdogan ji dil bû yan bo lêdana CHPê bû?

**Hêmin Xoşnaw** Hewlêr

Eşkerekirina belgenameyên nû derbarê komkujiya Dêrsimê de, nakokiya di navbera AKP û CHPê de tund kir. Neviyên qurbaniyên komkujiya Dêrsimê daxwazê ji siyasetvanên Tirkiyeyê dikin ku vê meseleyê nekin sedemê safîkirina hisabên di navbera xwe de, ew herwiha daxwazê ji Erdogan dikin ku arşîva wê komkujiyê veke û çarenivîsa keçên ku wê demê hatin firotin û gora Seyîd Riza diyar bike.

Dêrsima ku piraniya rûniştvanên wê Kurdên Elewî ne û bi zaravê kirmanckî dipeyvin, di dirêjiya dehên salên borî de rastî gelek tundî û binpêkirinan ji aliyê dewleta Tirkiyeyê ve hatiye. Heta dema komkujiya Ermeniyan di sala 1915ê de, ji xeynî Kurdan hejmareke zêde ya Ermeniyan jî li vê deverê jiyane. Her ji serdema Osmaniyan heya dema piştî Atatürk, di hundirê salên 1907-1938an de zêdeyî 10 êrîşên leşkerî li ser xelkên Dêrsimê hatine kirin.

Piştî derbasbûna 73 salan di ser serhildana Dêrsimê re, ku di encamê de Seyîd Rîza û hevalên wî hatin darvekirin, heya weke îro ne diyar e çend Kurd di wê demê de li Dêrsimê hatin kuştin. Lê belê çîroka bi kom kuştin û dirandina zikên jinên ducanî û birin û firotina keçên Dêrsimê ji aliyê leşkerên tirk, vêga jî di stranên keleporî yên deverê de tên gotin.

Generalê Tirk Muhsin Batur ku yek bû ji wan efserên ku beşdarî di komkujiya Dêrsimê de di sala 1938ê de kiriye, beriya ku bimire, di pirtûka xwe ya bi navê Rojên Dêrsimê de bi vî rengî qala wê komkujiyê dike: “Me li tenişta Elazigê kampeke leşkerî çêkir, dûre bo dema du mehan me dest bi operasiyoneke leşkerî kir. Daxwaza lêborînê ji xwendevanên xwe dikim ku nikarim bêjim di wê demê de çi qewimî.”

Li gor belgeyên ku di van çend rojên dawî de di rojnameya Radikal a tirkî de hatine weşandin, komkujiya Dêrsimê piştî amadekirina “Rapora Kurdî” ji aliyê serokwezîrê heyama Ataturk, Îsmet Înönü destpê dike. Înönü yekem serokwezîrê Tirkiyeyê bû, di heman demê de damezirênerê CHPê bû. Berî ku komkujî destpê bike, Inönü raporeke taybet li ser Dêrsimê dide serokkomarê Tirkiyeyê Mustefa Kemal Ataturk. Di vê raporê de Inönü dinivîse: “Ermenî li Dêrsimê nemane, meydan ji Dêrsimiyan re vala bûye. Lewma pêwîst e pir bilez operasyoneke leşkerî bê kirin.” Lewma parlementerê CHPê û parlementerê Dêrsimê Huseyin Aygun di televizyonê de got: “Dewlet û CHP ji komkujiya Dêrsimê berpirs in.” Ev gotina Aygun bû sedema krîzeke mezin, pêşî di nava CHPê de û dûre jî di navbera CHP û AKPê de çêbe.

Reaksyona yekem li dijî gotinên Aygun ji nava CHPê hat. 25 parlamenterên CHPê di daxuyaniyekê de daxwaz kirin lêkolîn ligel Aygun bê kirin û serokê CHPê di vî alî de helwesta xwe kifş bike. Lê di daxuyaniyeke şok de, cîgirê serokwezîrê Tirkiyê Bülent Arinç, daxuyaniya Aygun bi “wêrekî” wesif kir û daxwaz ji parlamenê kir bo lêkolînkirina komkujiya Dêrsimê komîteyekê pêk bîne. Ev gotûbêj bi daxuyaniya serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan ket qonaxeke nû, gava got ku CHP ji wê komkujiyê berpirs e û di daxuyand: “Eger tiştekî bi vî rengî hebe û pêwîst bike, bi navê dewletê daxwaza lêborînê ji Dêrsimiyan dikim”. Par jî Erdogan li Parlemena Tirkiyeyê de gotibû ku şerm e ku heya vêga gora Seyîd Riza ne diyar e. Piştî daxuyaniya Aygun, serokê CHPê Kemal Kiliçdaroglu şok bû û nizanibû çi bike, ji ber ku ew serokê CHPê ye û xelkê Dêrsimê ye û xizmên wî di vê komkujiyê de hatin kuştin, komkujî jî di serdema desthilatdariya CHPê de qewimiye û serokwezîr û damezirênerê CHPê Îsmet Inönüyê esil-kurd jî rêvebirê komkujiyê bûye, bi kêmasî tevlî bûye. Kiliçdaroglu di bersiva daxuyaniya Erdogan de got: “Lêborîn têr nake, pêwîst e arşîvan vekê, kesên ku hatine veguhastin zeviyên xwe werbigirin.”

Nivîskarê ji Dêrsimê Elî Balkiz derbarê mijarê de ji Rûdawê re got: “AKP hewl dide vê meseleyê bikar bîne û dengderên Dêrsimê li dijî CHPê germ bike. Hewl dide nan û pîvazan bi Dêrsimê bixwe, lê divê CHP netirse û tevdana vê mijarê ji aliyê parlementerekî xwe bike xala guherînê. Xwestina lêborînê CHPê biçûk nake, lê mezintir dike.”

Bi baweriya serokê Federasiyona Saziyên Sivîl ên Dêrsimê Ozkan Tacar, daxwaza lêborînê ya Erdogan hewldaneke bo xapandina xelkên Dêrsimê, ji ber ku wê partiyê heya weke vêga di hilbijartinên giştî û herêmî de ti deng li vê deverê neaniye û “divabû CHPê însyatîf bigirta dest û daxwaza lêborînê bikra.”

Derbarê şerê medyayê di navbera AKP û CHPê de, neviyê Seyît Riza, Rustem Polat bangî siyasetmedaran dike ku “Bila kes meseleya Dêrsimê bo armancên siyasî bikar neyîne. Kiliçdaroglu ji malbateke Dêrsimî ya zehmetkêş e.” Derbarê daxwaza lêborînê ya Erdogan jî, Polat got: “Xwezî daxwaza wî ya lêborînê di nava salona parlemenê de bûye, wê demê watedartir dibû. Di siberojeke nêzîk de emê bizanin ka Erdogan rast dike yan siyaset kiriye, lê ev têr nake, divê hemû arşîvan veke.”



## Komkujî didome

**Haydar Işik**

Ew wêneyê Ataturk û Diyap Aga (ku cilên kurdî li xwe kirine), di otomobîlê de bînin bîra xwe. Wê demê pêdiviya Ataturk bi kesayetên Dêrsimî yên weke Diyap Aga û Hasan Hayrî Beg hebû. Heta ku pirê re derbas bûn, ji hirç re gotin xalo. Dr. Şivan di salên 60'î de behsa vê rastiyê dikir. Tenê ji malbata Dr. Şivan 54 kes hatin kuştin. Diyap Aga û 4 mebûsên din yên Dêrsimî bo avakirina Komara Tirkiyeyê alîkarî kirin. Lê piştî ku dewlet, artêş, polîs, dad, burokrasî û çapemenî karîbû li ser lingên xwe bisekine, Kemal Ataturk rûyê xwe yê rastî yê tûndrew derxist holê.

Dewleta netewî her kesî Tirk û her baweriyê jî Henîfî dibîne. Ji ber ku Kurd ne li gor vê şablonê ne, Qanûna Islahat a Şer derxistin. Serhildana Şêx Seîd û ya Agiriyê bi xwînrijandinê têkbirin. Agirî serhildana Kurdan ya dawî bû. Lê li Dêrsimê li dijî dewletê ti raperîneke biçûk jî tune bû; Dêrsimiyan ne piştgirî dabûn Koçgiriyê, ne dabûn Şêx Seîd û ne jî dabûn Agiriyê. Ew li herêma xwe ya dorgirtî, di nava sîstema eşîriyê de û di nava şerê navxweyî de dijiyan û bi propagandaya dewletê xapiyan: Kemal Ataturk Elewî ye, Dêrsim bi rastî Tirk e, Dêrsimî Tirkmen in û ji Xorasanê hatine û hwd... Rojnameya Tanê di sala 1935ê de ev derew diweşandin.

Paşê ew raporên navdar ji aliyê hikûmetan ve hatin amadekirin. Di 1935ê de navê Dêrsim hat guhertin û kirin Tuncelî. Serokên eşîretan yek bi yek kirin muteahhît, bar û erzaqên leşkeran wan birin û anîn. Û li her navçeyê qereqolek ava kirin. Di 4ê Gulana 1937ê de Kemal Ataturk biryara êrîşkirina ser Dêrsimê da. Demançe xiste paşila keça xwe ya sêwî Sabiha Gokçenê û ew şand Dêrsimê bo komkujiyê. Gokçen jî bi firokeya xwe bombeyên 50 kiloyî rijandin ser gundan û serobin kir. Li hemberê jin, zarok û kal û pîrên ku xwe di şikeftan de veşartibûn, gazên kîmyewî bikaranîn. Hinek kes dikirin kadînan û dişewitandin. Bo pêwendiyê bangê Seyîd Riza kirin û ew çû Erzinganê; bi awayekî qelleş ew li ser pira Muti girtin û birin Elezîzê û xistin zîndanê. Di nava kesên ku nizanin ka çima tên darizandin de, li ber derew û fenên kujeran wî çoka xwe neda erdê û di 14ê Mijdara 1937ê de wî darvedikin.

Eşîretên Dêrsimê dixapînin û di sala 1937ê de dibêjin: Em ê tenê êrîş bibin ser eşîra Avasan, Demenan û Heyderan, em têkilê we nabin. Lê di 1938ê de komkujî fireh û kûr kirin. Êrîşên tûnd birin ser beg û eşîretên bêdeng û ew tune kirin. Baş tê bîra min, di zarokatiya min de em diçûn berbi Çiyayê Duzgin, me dizanî ku li wir di newalan de estî hene. Dayîka min dema ku şîr dide min, komkujiya li wê newalê temaşe dike. Digot, xelk bi qurmê darê ve girê didan û don lê dikirin û dişewitandin.

Di salên 40î de kesekî ji eşîra Demenan (ku hindik kes ji wan xilas bûn) dema ku dihat mala me behs dikir. Ev mirovê perîşan dema behsa serpêhatiyên xwe dikir, digot “Me Misto Kor birîndar kir“. Ev gotin nîşan e ku Mustafa Kemal serkêşiya vê komkujiyê kiriye. Ji ber ku ji plankirinê bigirin heta pêkanîna wê wî tê de cih girtiye.

### Dêrsimî û Sendroma Stockholmê

Îro Dêrsimî dengan didin partiya Ataturk, CHPê. Posterên wî li malên xwe daliqînin. Dibêjin ku haya wî ji komkujiyê tune bû. Dêrsimî ji kujerên xwe hezdikin. Ev helwest dide xuyakirin ku bi Dêrsimiyan re Sendroma Stockholmê heye.

Serokwezîr Erdogan lêborîn xwest û hinek belge nîşan dan. Lêborîn xwestin helwêsteke giranbiha ye lê heta ku nava wê neyê tijekirin, bê wate ye. Eger serokwezîr ji aliyekî ve lêborîn bixwaze û ji aliyê din ve dîsa bêje “Yek netew, yek ziman, yek bawerî” ev ji bo Kurdisanê dibe heqaret. Serokwezîr di çarçoveya siyaseta dewletê ya wek, “Perçe bike û rêkbibe“ hewl dide û dixwaze Kurdên elewî li dijî Kurdên din bikişîne cem xwe. Ew serokwezîrê ku lêborînê dixwaze, eger li ser çemekî 20 bendav ava bike, demografiya Dêrsimê xira bike, daristanan bişewitîne, çiyayan her roj bombebaran bike û nexwaze navê Dêrsimê şûnde bide, çi wateya lêborîne heye? Heta ku perwerdeya zimanê zikmakî nede zarokên kurd, çi wateya lêborînê heye? Heta ku xweseriya demokratîk nede Dêrsimê, heta ku zerarên Dêrsimiyan qerebû neke, tiştên ku dike tê wê wateyê ku tenê dixwaze pêşiya Kemal Kiliçdarogluyê Dêrsimî bigire. Kiliçdarogluyê ku Kurdbûna xwe vedişêre, bi nasnameya xwe ya kemalîst bûye serokê wê partiyê. Komkujî didome.

Sekreterê Yekîtiya Dewletên Erebî şok bû

# “Çawa Kurd bê nasname ne li Sûriyê, êdî çawa dikarin kar bikin û bixwînin”



**Hewlêr (Rûdaw) –** Heftiya borî şandeke Civata Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê, li Qahîreyê ligel sekreterê giştî yê Yekîtiya Dewletên Erebî, Nebîl El-Erebî, civiya. Endamên şanda kurdî civîn weke “erênî” wesif dikin û dibêjin: “Nebîl El-Erebî soz da me ku weke beşekî serekî yê opozisyona sûrî ligel Civata Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê tevbigere.”

Heftiya çûyî şandeke 6 kesî ya Civata Niştimanî ya Kurd li Sûriyê bi serokayetiya Hemîd Derwêş û endamtiya Dr. Kamîran Hecî Ebdo, Kamîran Haco, Dr. Welîd Şêxo, Telal Paşa û Dr. Sededîn Mela li bajarê Qahîre li baregeha serekî ya Yekîtiya Dewletên Erebî ligel Nebîl El-Erebî civiyan.

Hemîd Derwêş civîna ligel El-Erebî “serkeftî” wesif kir û bo Rûdawê got: “Me di civînê de tekez kir ku em beşekî serekî yê opozisyona sûrî ne, lewma eger Yekîtiya Dewletên Erebî dixwaze bo çareseriya pirsa Sûriyê ligel opozisyonê bicive, pêwîst e me weke beşekî giring yê opozisyonê bibîne.” Derbarê bersiva El-Erebî jî, Hacî Derwêş got ku “Nebîl El-Erebî ji me re got daxwaza we rewa ye û em jî we weke beşekî opozisyona sûrî dihesibînin û we vedixwînin civîna Yekîtiya Dewletên Erebî û opozisyona sûrî.”

Derbarê daxwaza bizava kurd bo Sûriya siberojê, ku civata kurdî daxwaza “mafê diyarkirina çarenivîsê” bo Kurdan li Rojavayê Kurdistanê di destûra bê ya Sûriyê de dike, sekreterê Partiya Demokrata Pêşverû ya Kurd li Sûriyê, Hemîd Hacî Derwêş, dibêje: “Helwesta El-Erebî pir eşkere bû, wî got Kurd milleteke û pêwîst e di Sûriya nû de bigihîje mafên xwe.”

Dr. Kamîran Hacî Ebdo ku yek ji endamên şanda civata kurdî li Qahîreyê bû, hoyê serdana wan bo Yekîtiya Dewletên Erebî bi hewldanên Yekîtiya Dewletên Erebî bo lidarxistina kongreya opozisyona sûrî ve girêda û got: “Nebîl El-Erebî daxwazên Civata Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê qebûl kirin. Civat weke nûnerê gelê Kurd di kongreya opozisyona Sûriyê de, ku Yekîtiya Dewletên Erebî saz dike, beşdar dibe.”

**Helwesta El-Erebî pir eşkere bû, wî got Kurd milleteke û pêwîst e di Sûriya nû de bigihîje mafên xwe.**

## Serokê Yekîtiya Dewletên Erebî soz daye Kurdan

Dr. Kamîran diyar kir ku “Nebîl El-Erebî soz daye ku kongreya opozisyona sûrî nayê sazkirin, eger civata kurdî tê de beşdar nebe.” Derbarê helwesta El-Erebî li ser daxwazên gelê Kurd û qebûlkirina mafê çarenivîsê yê gelê Kurd, Dr. Kamîran got: “Me qala dîroka Kurdan li Sûriyê ji Nebîl El-Erebî re kir. Bi baweriya min zêde agahiyên wî li ser Kurdan nebûn. Gava me qala rastiya Kurdan dikir, ew matmayî dibû, ecêbmayîna xwe nîşan dida. Digot çawa Kurd bê nasname ne li Sûriyê, çawa dikarin kar bikin û bixwînin.”

Yekîtiya Dewletên Erebî daku kongrekî bo opozisyona sûrî saz bike, ew şert li ser aliyên opozisyonê ferz kiriye ku bi hevre diyalogê bikin û li ser projeyeke hevbeş li hev bikin. Paşê nûnerên Civata Niştimanî ya Sûriyê, ku li Stenbolê hatiye damezrandin, ligel nûnerên Desteya Hevrêziya Niştimanî li Sûriyê, ku bi alîgiriya Beşar Esed tê tometbarkirin û ku PYD û çend partiyên erebî yên sûrî lixwe digire, bi armanca pêkanîna lihevkirinekê derbarê xalên nakokiyê de çend caran li Qahîreyê civiyan. Di heman demê de şanda Civata Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê jî ligel herdu aliyan civiya.

Derbarê wan civînan de Hemîd Hacî Derwêş li Qahîreyê ji Rûdawê re got: “Em ligel herdu aliyên opozisyona sûrî civiyan, civînên me wê bidomin. Bi baweriya min eger hêdî jî be, hinek aliyên opozisyona sûrî li mafên Kurdan mikur tên.”

## Lihevkirin li ser naskirina mafê Kurdan

Heftiya borî sekreterê PYDê Ebû Welat ji Rûdawê re ragihandibû heya weke Civata Niştimanî ya Kurdî li dijî desttêwerdana derveyî helwesta xwe nîşan nede, ew hevkariyê ligel wan nakin. Lê Ebdulbasit Seyda, endamê kurd di Komîteya Bicihanînê ya Civata Niştimanî ya Sûriyê de, di hevpeyvînekê de ligel kanala El-Erebiye got ku pêwendî û hevahengiya wan ligel Nivata Niştimanî ya Kurdî heye û herwiha got ku wan jî li ser pêwîstiya naskirina mafê gelê Kurd di destûra nû de li hev kirine û wiha berdewam kiribû: “Lê me ew zelal nekiriye, ew maf çi ye, otonomî ye, federalî ye yan tiştekî din e, ji ber ku em niha di qonaxa şoreşê de ne û niha ne demeke baş e bo van kitekitan.”

Dr. Kamîran şertê Yekîtiya Dewletên Erebî giring dibîne û bi baweriya wî di berjewendiya gelê kurd de ye û dibeje “Piştî vê helwesta Yekîtiya Dewletên Erebî herdu bereyên opozisyona sûrî nermtir li daxwazên Kurdan dinerin. Emê di rûniştina bê de ligel opozisyona sûrî yekalî bikin ku divê berî kongreyê aliyên opozisyonê nivîsareke ji hevfêmkirinê ligel Kurdan îmze bikin.” Derbarê dema girêdana kongreyê jî, Dr. Kamîran got: “Dibe ku di 01.12.2011 de kongre li Qahîreyê bê sazkirin.”

## Şirove

### Pêdiviya yekrêziya Kurdistanî û rola Hewlêrê

**Bayram Ayaz**

Li kû deverê Kurdistanê yan li çi derê cîhanê dibe bile bibe, demê hêzên kurd û Kurdistanî li hev dicivin, nêzîkî hevdu dibin, hevkarî û hevbendiyan bi hevdu re pêk tînin, gelekî keyfa me tê. Demê peywendiyên wan xerab dibe, ez bi xwe pê diêşim. Carnan jî ditirsim ku ev nelihevî biçin bigihin “şerê xwekujiyê“!

Şikir ev metirsî êdî gellekî kêm bûye. Serokê Kurdistanê birêz Mesûd Barzanî bi helwesta xwe derbarê “şerê xwekujiyê“ de di nav tevgera welatparêza Kurdistanê de têgihîştin û exleqekî nû afirand. Hêdî hêdî di nav kadroyên siyasî zanyariyeke wisa peyda dibe ku “şerê xwekujiyê“ wek gunehbariya herî xerab tê çespandin. Ev têgihîştin pêşketineke herî girîng e ku van salên dawî di nav zanista siyasî ya kurdewar û Kurdistanî cihê xwe girtiye. Divê em vê zanistê ji xwe re bikin prensîba sereke û rêbaza exleq û xebata siyasî. Ev zanist û têgeha siyasî wê Kurdan bigihîne hevdu.

Cihê keyfxweşiyê ye ku tevgera welatparêza Kurdistanê gihaye vê qonaxê. Ev di tevgera azadixwaz de qonaxeke nû ye. Qonaxa kamilbûna netewetiyê û pêşvexistina prosesa dewletbûnê ye. Gelê Kurd û bi taybetî pêşengên civakî û siyasî yên Kurd û Kurdistanê hewce ye bi pêdiviyên vê qonaxê rabin. Di vê qonaxê de rola Hewlêra paytext, rolekî dîrokî ye. Ji ber ku ev qonax herî çêtir bi dam û dezgehan dikare bi pêşkeve. Dam û dezgehên dewletê civakan dikin neteweyên bi istîqrar. Ji ber vê rastiyê em dikarin bi hêsayî bêjin ku berê Kurd û Kurdistaniyên welatperwer, dil û mejiyê wan ber bi Hewlêrê ve ye. Serok Barzanî bi seredanên xwe yên vê dawiyê bo welatên dorber û Ewropayê û her wisa helwestên wî yên berevaniya di ber doza rewa ya gelê Kurd de, da nîşan dan ku derdê Barzanî ne tenê Kerkûk, Şêxan, Şengal, Zimar û Xaneqîn e, her wisa trajediya erdheja Wanê, hawara dayikên gerillayan, şehîdên Qamişloyê, hewldanên pûçkirina destketiyên bizava azadîxwaz li hemî parçeyên Kurdistanê xewa şevan li Serokê Kurdistanê diherimîne! Ew hay ji barê xwe yê giran heye, kursiya lê rûniştiye dadigre. Her wisa divê her Kurd û Kurdistaniyekî xwedî berpirsiyarî jî taybetiyên vê qonaxa dîrokî têbigîhe, bizane û wisa tevbigere.

Doh (28.11.2001) dema ku me hevdîtina şanda Encûmena Kurdên rojavayê welat li ber Serok Barzanî dît û gotar bihîstin, dilê me gelekî rehet bû. Kurdên rojavayê welatê me dane ser rê û rêçika rast. Şandeka wan çû Qahirê, serdana navenda Kombenda Erebî kirin, ji ber ku piraniya Sûriyê Ereb in. Ya din berê xwe da paytexta Kurdistanê, ji ber ku çareseriya herdemî projeya Kurdistanê ye. Berî her tiştî Kurd divê lihev bin û xwedî gotareke hevbeş bin.

Tiştên diqewimin cihê keyfxweşî û şanaziyê ye. Wisa bawerim, vê carê Kurdan benikê dîrokê û qirnê bi dest xistine. Belê, divê em bi çerxa serdema 21an re lihev û guncav biherikin.

Îsal meha Gulanê, dema şanda Kurdên bakurê welat jî seredana Hewlêrê kirin, hingê Kurd pê keyfxweş bûn. Ew coş jî careka din hewce ye ku were geş kirin. Gelê kurd û tevgera welatparêz di gava pêş me de li benda civandina Konferansa Kurdistanî ye ku bikare dengê yekrêziya Kurdistanî bigihîne cîhanê. Çav û gohên dilsozan li Hewlêrê ye. Hewlêra ku geşbînî û germa xwe bigihîne Qamişloyê, Amedê û Mahabadê.

## Şirove

Wêneyê Mele Kirêkar yan Banû Reşîd



### Kurdên Ewropayê kîjanî ji wan dixwazin?

Hêmin Ebdulla

Dewleta Almanyayê kesûkarên wan Kurdên (ligel hejmareke kesên biyanî yên din) ku di çend salên borî de bi destê grubeke nijadperest a almanî hatin terorkirin, tawîz dike. Kurdên rûniştvanên Ewropayê jî, weke hertim, derfeta başkirina wê wêneya tehl ku derbarê wan de di mejiyê Ewropiyan de hatiye çêkirin, ji dest didin.

Gellek caran qewimiye ku ji heval û nasên xwe yên ewropî dibihîzim, dibêjin "Berê gava navê Kurdan dihat gotin, peyva terorîst dihat bîra me." Ez qet bi van peyvan matmayî nedibûm, ji ber ku dizanim çiqasî rola tembeliya medyaya ewropî di lêgerîna rastiyan de û çalakiyên dijî Kurdan yên lobiyên dewletên dagîrkerên Kurdistanê li welatên ewropî û berjewendîperestiya xirab ya hikûmetên ewropî di vî weneyî de heye di nîşandana Kurdan de weke terorîst, ewqasî jî nezanî û xeletiyên me ev wêne çespandiye.

Em dûr naçin û awirekê li çalakiyên salên 1980 û 90an yên PKKê li Ewropayê didin. Her çiqasî piştre derket ku tiştê derbarê hebûna destê PKKê di terorkirina serokwezîrê berê yê Swêdê Olof Palme de dihat behskirin bê belge ye, lê nayê înkarkirin ku karên ku PKKê di wê serdemê de û di salên dûre de li Ewropayê kirin, wiha kirin ne tenê PKKê lê belê hemû Kurd bibin nêçîreke hêsan ji bo lobîkarên dijî gelê Kurd, heya ku li cem Ewropiyekî sade yê mijûlê karê rojane û bê dem bo lêkolînkirina rastî yan ne rastiya tometbarkirinan, Kurd weke demonên tirsnak bên nîşandan.

Ew kelecana ragihandinê li ser Mele Kirêkar heya weke vêga jî car caran li Norwêc û welatên din yên Ewropayê destpê dike û tê de Kurd û teror bi hevre tên girêdan, mînakeke din a nezaniyên gelê Kurd e. Kurdek ku aza ye dawiya her heftiyekê bo dijayetîkirina partiyeke kurdî ya din ya rikebera partiya xwe li paytextên Ewropayê xwenîşandanan bike, yan daxwaza rûxandina rêveberiya tekane ya xwecihî bike, nizanim ji ber çi heya weke niha neketiye serê wî ku bi xwenîşandanan xwezaya xwe ya dij-terorîstî li pêşber kamerayên medyaya ewropî nîşan bide?

Îsal du bûyerên giring çêbûn ku Kurdên rûniştvanên Ewropayê dikaribûn bikar bînin. Bûyera yekemîn terorkirina çalakvana Kurd Banû Reşîd bi destê terorîstekî norwêcî bû. Vê bûyerê li seranserê cîhanê deng veda û Banû bû sembola redkirina terorê ji aliyê xelkên Norwêcê, lê hevneteweyên Banû li Ewropayê çi kirin, daku nîşan bidin ku Kurd kuştiyên destê terorê ne û ne ligel terorê ne? Weke herdem, Kurdan tenê mêzandin û medyaya me jî, ev rojname jî di nav de, bi belavkirina raporeke rojnamevanî mesele ji situyê xwe kirin.

Bûyera duyemîn jî eşkerebûna grubeke almanî ya cîbicîkera kuştina 5 kesên Kurd (ligel hejmareke kesên biyanî yên din) bû ku çend heftî ne li Almanyayê xirûcirî derxistiye holê. Almanya bi hikûmet, parlemen, medya û kolanê hat pêş û xwe ji terorîstên xwe bêrî dikin, lê Kurdên qurbaniyên destê terorê nayên ser kolanan. Jê jî bigere ku Kurd vê derfetê bikar nayînin, daku li kitekitên çîroka terorkirinên din yên lawên xwe li Ewropayê bipirsin. Gelo ti kesî ji me ji xwe pirsiye: Çi derfetek ji niha baştir e ji bo daxwazkirina derxistina rastiyan derbarê terorkirina Ebdulrehman Qasimlo û Sadiq Şerefkendî û Kurdên din ên ku li Ewropayê hatin terorkirin?

Dayikeke kurd li Norwêcê ji min re digot: "Zarokên min Mele Kirêkar û Banû Reşîd weke Kurdên Norwêcê dinasin, lê qet min nebihîstiye yek ji wan bêje 'eger mezin bûm, dixwazin bibim weke Mele Kirêkar', lê gava qala Banû dikin dibêjin "em dixwazin bibin weke wê". Ev wêne giring e ku Kurdên Ewropayê nîşanî derdora xwe bidin. Wêneyê Kurdekî ku bi xwe qurbaniyê destê terorê ye û naxwaze weke terorîst bê naskirin.



Wêne: Rûdaw

# Gabar Çiyan beşdarî xebatên Koalîsyona Dadgeha Cezekirina Navneteweyî dibe

**Salihê Kevirbirî** Stockholm

Rêxistina Mafên Mirovan "Kurdocide Watch-CHAK" ev demeke dirêj e ku li dijî jenosîd, şerê qirêj û sûcên li dijî mirovatiyê xebatê dike. CHAK heta niha li 11 welatên Ewropayê xwe bi rêxistin kiriye û li Kurdistanê nûner û komeleyên wê hene. Destpêka vê mehê CHAKê gavek din ya giring berbi pêş avêt.

Rojnameger û nivîskar Gabar Çiyanê ku Cîgirê Serokê Giştî yê Kurdocide Watch CHAKê ye, di rojên pêş de beşdarî xebatên Koalîsyona Dadgeha Navneteweyî ya Cezekirinê (CICC) dibe. Çiyan destpêka vê mehê ji aliyê Rêveberiya Navenda Koalîsyonê ya li New Yorkê ve bi nameyekê hate agahdarkirin ku beşdarbûna wî di xebatên wan de hate pejirandin. Gabar Çiyan bi giranî li ser pirsên Rojhilata Navîn û Turkiyê wê beşdarî xebatên komên Koalîsyona Dadgeha Navneteweyî ya Cezekirinê (CICC) bibe.

Şayanê gotinê ye ku Koalîsyona Dadgeha Navneteweyî ya Cezekirinê, bi 2500 rêxistinên civakî li 150 welatan, tevlî hevalbendên xwe ji bo xurtkirina hevkariya neteweyan bi Dadgeha Navnetewî ya Cezekirinê re kar dike, herwiha ji bo ku biryarên dadgehê bi edalet, efektîv, eşkere û gerdûnî be dixebite. Ji bo mafê qurbanên jenosîd di sûcên dijmirovî û şerên qirêj de biparêze, CICC kêmasî û hewcedariya guhertina qanûnên neteweyî destnîşan dike û gavên pêwist diavêje. CICC herwiha mexdurên jenosîdê li ser mafê wan agahdar dike, rê nîşanî wan dide, raya giştî li ser pirsê serwext dike, beşdarî niqaşên navneteweyî dibe û ji bo pejirandina Peymana Romayê li welatan kar dike.

Gabar Çiyan, li ser geşedana dawî û xebata bi komên Koalîsyonê re, ji Rûdawê re axivî û bîr û boçûnên xwe wiha bilêv kirin: "Sûdwergirtina ji tecrûbeyên hev û hevkarî ji bo dezgeheke ku bi pirsên jenosîd, şerê qirêj û sûcên mirovahiyê re mijûl e, giring e. Ji sala 1988ê ve xebatên min li ser dokumentasyon û rojnamegeriya lêkolînî didome û giraniya van karan bi pirsên mafên mirovan ve girêdahî ne. Hejmarek pirtûkên min li ser pirçandîbûna li Kurdistanê û parastina wan belav bûne. Ji bo ku li Tirkiyeyê, Îraq, Îran, Sûriyê û Kurdistanê rêz û hurmeta ji bo Dadgeha Navneteweyî ya Cezekirinê zêdetir bibe, ez amade me her kar û peywira bikeve ser milên min hilgirim."

### Enstîtuya Parastina Mafên Zarokan ya li Mezopotamyayê

Xebateke din ku wê cara yekem bi riya Rûdawê bê eşkerekirin, damezirandina "Enstîtuya Parastina Mafên Zarokan ya li Mezopotamyayê"ye. Daner, rêveber û kedkarê vê projeyê jî Gabar Çiyan bixwe ye.

Ev salek e ku Çiyan li Bakurê Kurdistan û Ewropayê gelek caran hevdîtin bi şaredar, siyasetmedar, parêzvanên mafên mirovan, hiqûqnas, enstîtu û dezgehên din ên çandîhunerî-zimanî pêk dianî da ku enstîtuyek li ser mafên parastina zarokên li Mezopotamyayê bê avakirin. Piştî encamdana xebatan, meha borî enstîtu ava bû. Enstîtuya Parastina Mafên Zarokan ya li Mezopotamyayê, Destûra Peymana Mafên Zarokan a Neteweyên Yekbûyî ji xwe re bingeh digire. Li gorî bername û destûrê xebata xwe bi awayeke serbixwe dimeşîne. Enstîtu tevî komîteya xwe ya nû, meha borî serî li navenda CHAKê da û bû endam. Enstîtuya ku her çiqas endama CHAKê ye jî, di xebat, destûr û rêvebirinê de otonom û azad e.




Tevlî qedexekirina dadgehê

# Kurd li Berlînê li kolanan bûn

**Wladimir Van Wilgenburg**

Desthilatdarên almanî xwenîşandaneke alîgirên PKKê qedexe kirin ku biryar bû li Berlîna paytexta Almanyayê li dar biketa. Xwenîşandan wê li dijî wan şîdetên ku vê dawiyê di navbera Kurd û Tirkên Ewropayê de derketin bûye. Lê qedexekirin jî nebû sedem ku xwenîşandan birêve neçe û nêzîkî 2 hezar Kurd û 200 çalakvanên çepger ên din jî hatin ser cadeyan û li dijî biryara qedexekirina PKKê li Almanyayê nerazîbûna xwe nîşan dan. Piştî mudaxeleya polîsan, di encamê de zêdeyî 100 kesî hatin girtin û hejmarek polis û çalakvan jî birîndar bûn.

Di 22ê Îlona îsal de Yekîtiya Komeleyên Kurdî li Almanyayê (YEK-KOM) daxwaza moletê ji berpirsên almanî kirin, bi mebesta sazkirina xwenîşandanekê li bajarê Berlînê di roja 26.11.2011an de. Xwenîşandan ji aliyê partiya çepgir a almanî “Die Linke” hat piştgirîkirin.

Pêşî xwenîşandanê molet wergirt û slogana wê jî “xurtbûna demokrasiyê, hilweşandina biryara qedexekirina PKKê, azadkirina Abdullah Ocalan û aşitî bo Kurdistanê” bû. Lê piştî biryara dadgeheke almanî, xwenîşadan hat qedexekirin û biryara qedexekirinê jî bo herdu mehên Cotmeh û Mijdarê derbasdar bû. Karbidestên almanî daxuyandin ku xwenîşandan hevdem bû ligel bîranîna damezirandina PKKê ku di 27ê Mijdara 1978ê de bû, lê belê amadekerên xwenîşandanê dibêjin ku diyarkirina wê rojê ne bi qest bû. Lê di dawiyê de xwenîşandan her birêve çû, tevî ku nêzîka du hezar polîs amade bûn. Piştî zexteke zêde ji aliyê polîsan, xwenîşandan piştî nîvro bi dawî hat.

### “Hikûmeta almanî heman polîtîkaya AKPê peyrew dike”

Li gor raporeke rojnameya Der Tagesspiegel a almanî, berpirsa polîsên bajarê Berlînê Margret Copers ragehandiye ku ji ber bûyerên borî yên alîgirên PKKê, ew êdî rê nadin ku xwenîşandana alîgirên PKKê birêve here, “ji ber ku tenê karekî propaganda ye ji bo PKKê.” Ev qedexekirin jî piştî rexneya Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan tê ku Almanya rexne kiribû û ragihandibû ku Almanya “nerm e li himber terorîstan” û gotibû: “PKK kariye bi rêya Almanyayê 6 milyon Euro bidest bixe.”

Vê dawiyê jî polîsên almanî nekarîn rê li ber çendîn êrîşên Tirkên nijadperest, ku xwe weke “gurên boz” nasandin, bo ser navendên kurdî yên çandî li Almanyayê bigrin. Di dema êrîşa wan nijadperestan de, di navbera Kurd û Tirkan de li bajarên Essen, Stuttgart, Oldenburg, Koln û Frankfurtê pevçûn derketin. Metirsiya wê jî heye ku pêwendiya grûba “gurên boz” ligel partiyên siyasî yên Almanyayê hebe. Nûnertiya vê grûbê li Tirkiyeyê ji aliyê MHPê tê kirin û çend rojnameyên almanî ev grûb şibandine Nazî û Faşîstan. Alîgirên vê grûbê jî li ser malpera “youtube” diyar kirine ku eger bizanin Kurd xwenîşandanan dikin, êdî ew rûbirûyê wan dibin.

Li gor gotina Hans Branscheidt, ku nivîskarekî alman e û alîgiriya doza kurdî dike, “Îsal hikûmeta almanî zexteke zêde daniye ser festîvalên Kurdan, di hundirê 5-7 salên borî de me ti qedexekarî li himber xwenîşandanên Kurdan nedîtibû.” Herwiha Behar Bêsar jî, ku lêkolereke Kurd e li Zanîngeha Ewropî li Îtalyayê, dibêje ev siyaseteke nû ye ku welatên Ewropayê peyrew dikin û ragehand ku di xwenîşandanên berê de Kurdan ewqasî hest bi zextê nekirine û got: “Niha ew pirr tund in li himber PKKê û bi baweriya min jî pêwendiya vê yekê heye ligel lihevkirina bi Erdogan re.”

### “Die Linke piştgiriya çalakiyên PKKê dike”

Li gor rapora salane ya dezgeha sîxuriya almanî, nêzîka 800 hezar Kurd li Almanyayê dijîn û di nav wan de 11.500 alîgirên tund ên PKKê hene. Di vê raporê de hatiye nivîsandin ku PKK “YEK-KOMê” bikar tîne ji bo encamdana çalakiyan û komkirina pereyan. Lê YEK-KOM van tometan red dike. Di raporê de herwiha hatiye diyar kirin ku partiya “Die Linke” ya almanî piştgiriya çalakiyên PKKê dike.

# Zimanê kurdî dikeve nav teknîk û teknolojiyê

**Canê Omer**

Bi pêşketina zimanê kurdî di gellek aliyan de, kurdî her ku diçe di warên nû de jî cihê xwe digire. Yek ji wan warên ku heta niha ji kurdî re weke qadeke qedexekirî dixuya, warê teknîk û teknolojiyê ye. Lê ev tabû jî rojbiroj dirûxin û kurdî li wan waran jî cihê xwe çêdike.

Destpêka vê mehê malpera “1000Hizir“ dest bi weşanê kir. Di “1000Hizir“ de babetên derbarê teknîk û teknolojiyê bi zimanê kurdî tên belavkirin. Dibe ku “1000Hizir“ yekemîn malper be di vî warî de. Kesên bi vî karî rabûne, komeke xortên kurd in. Beşek ji wan xwendekar in û beşek jî karker in, hin ji wan li Swêdê dijîn û hin li Kurdistanê û hin jî li welatên din yên Ewropayê. Yek ji wan Hirorî ye. Hirorî xwendekare li Enstîtuya Komputer li Duhokê. Ew alîkariyê di warê dîzaynkirin û pirsên tertîbkirina malperê de dike û di malperê de jî dinivîse. Revend Şêxo (18 salî) jî xwendekarê warê Zanistiya Xwezayî ye li Swêdê. Şêxo ji Rûdaw re got ku ev demeke dirêje projeyeke wiha di hizira wan de bû: ”Navê 1000Hizir pêşî ji hizirekê ji berî 2 salan ve hat. Hizir ew bû ku em bernameyeke televizyonê çêbikin û biweşînin. Lê ji ber ku ev plan bi dawî nehat, me dest bi plankirina malpereke teknîk û teknolojiyê kir. Armanca me ji vê malperê jî alîkariya ciwanên kurd bû. Berî ku malper were weşandin, gelek peyam ji me re hatin. Gellek keç û xort bi vê însyatîfê gellekî kêfxweş bûn. Ev jî tê wê wateyê ku hêviyên ciwanên kurd ku bi zimanê xwe di gelek waran de bixwînin, mezin in.“




Herwiha armanca vê malperê ew e ku ciwanên kurd û bi taybetî hezkiriyên nûçeyên teknîkî karibin ser vê malperê nivîsarên derbarê teknîkê ji warên cûr bi cûr, mîna vîdyo, sînema, înternet, telefon, fîlm û warên din jî bi zimanê kurdî bixwînin û asoyên zanebûna xwe di vî warî de dewlemendtir bikin. Li gor Revend ”ne tenê pêwîstiya teknîkê bi zimanê kurdî heye, lê belê pêwîstiya me bi zimanê kurdî di hemû waran de heye û em bi hêvî ne ku ciwan gavên wiha bavêjin û di gellek waran de bi kurdî binivîsin.“

Li ser pirsa gelo kesên di malperê de kar dikin hemû şagirt in, an kesên pispor ên teknîkê alîkariya wan dikin, birêvebirên 1000Hizir wiha bersiv dan: ”Belê, di nav me de hene yên ku ji teknîkê fehm dikin û yên ku gelekî bi dîzayn, deng û reng re mijûl in. Û her ji ber vê yekê em grûpeke baş in di gel hev, em hev temam dikin.“

Di dawî de birêvebirên 1000Hizir peyamenkê ji ciwanan re dişînin û dibêjin: “Em dixwazin bi zanyariyên xwe alîkariya ciwanên kurd bikin û bi hêvî ne ku em bi rastî bikaribin bibin alîkar. Herwiha malper ji her kesê ku bixwaze bibe alîkar re vekirî ye û em bi dilekî germ bixêrhatina wan dikin.“



## Eren di du maçan de 4 gol avêtin

Bayer Leverkusen bi golên futbolvanê kurd Eren Derdiyok ligel Chelsea biser ket (2-1) û pêşî li ber têkçûne Berlînê girt. Tevî gola Eren a li hemberê Chelsea, Leverkusenê beşdariya fînala 8. ya Lîga Şampiyonan garantî kir.

Futbolvanê kurd Eren Derdiyok hefta borî di du maçan de ji bo taximê almanî yê di lîga 1. de (1. Bundesliga) Bayer Leverkusenê bi giştî 4 gol avêtin.

Eren gola yekem di maça Lîga Şampiyonan de ligel tîma îngiliz ya bihêz Chelsea di deqeya 72. de avêt û sê gol jî dawiya hefta borî li Berlînê avêtin qeleya Hertha Berlînê. Lê 3 golên Eren jî têra serketina Leverkusen nekirin û di dawiya maçê de Hertha Berlînê golek din avêt û maç 3-3 bi dawî bû.

Eren beriya ku gol bavêje qeleya Hertha Berlînê, tîma wî Bayer Leverkusen 0-2 li paş bû. Eren golên xwe di deqeya 24., 64. û 79. de avêtin û 3-2 Bayer Leverkusen kete pêş. Di deqeya 82. de jî Pierre-Michel Lasogga golek avêt û encama maçê guherand 3-3.

# Tîmên Amedê têk diçin



Di her du lîgên Tirkiyeyê yên jor de ti tîmeke kurdan tune û çendîn tîmên Amedê jî di lîgên jêr de hefteyên bê serkeftî derbas dikin. Du hefteyên borî tîmên futbolê yên Amedê Kayapınar Belediyespor, Büyükşehir Belediyespor û Diyarbakirspor li ser hev pûan wenda kirin.

### Kayapinar Belediyespor kete binî lîgê

Yek ji tîmên Amedê Kayapinar Belediyespor hefta borî maça dawî li deplasmanê ligel Darica Gençlerbirligi leyîst û 4-0 winda kir û di binî lîgê de bi tenê ma. Kayapinar Belediyespor tenê maçê winda nekir, herwiha rastî şokeke din hat: Golvanê tîmê Emrah Metoglu (22) di maça dawî de jî kerta zer wergirt û wê di maça hefta pêşiya me de neleyîze. Li gor yasayên FIFAyê leystikvanekî li ser hev 4 kertên zer werbigire, weke kerta sor tê hesibandin û nikare maça dawî bileyîze. Heta niha Kayapinar Belediyespor di sezonê de 11 gol avêtine û 7 gol tenê yên Emrah Metoglu ne.

Berpirsê Teknîkî yê Kayapinar Belediyespor Sertaç Kuçukbayrak ragehand wan ligel hemû hewldanan nekariye pêşî li têkçûnên bigirin û got, "Me nekarî futbola ku em li Yozgatê leyîstin, li Daricayê jî bileyîzin. Jiber me gola ewil pir zû dît, me kontrola leystikê winda kir. Weke ku em teslîm bibin, me gol li ser golê xwar. Ligel hemû ceribandinan em nikarin biserkevin, lê divê em maça roja yekşemê li Afyonkarahisarê bistînin û dest bi rêze serkeftinan bikin."

Kayapinar Belediyespor li lîga 3.mîn de, di rêza 18.mîn de ye û 8 puanên wê hene.

### Tîma Şaredariya Mezin a Amedê revizyonê dike

Rewşa tîma Şaredariya Mezin a Amedê, Buyukşehir Belediyespor jî di hefteyên dawî de xirab e. Ev tîm li maça deplasmanê ligel tîmeke lawaz Umraniyesporê leyîst û 2-1 têkçû û maça dawî jî li saheya xwe hefta borî ligel tîma herî lawaz Gebzesporê leyîst û 1-1 bi dawî bû. Piştî vê enamê ferqa navbera tîma Şaredariya Mezin a Amedê û ya lîderê lîgê pir mezin bû. Teknik Direktorê tîmê Nurettin Şiro got ji bo serkeftinê çi pêwîst be wê bikin û ji bo wê jî wê di tîma xwe de revizyonê bikin. Şiro got, "Hinek leystikvanên me hene tista em ji wan hêvî dikin bicîh naynin, divê em derbarê wan de biryarek bigirin. Yên ku nikarin heqê formayê bidin, divê heta ew xwe di ber çavan re derbas nekin, wê formayê lixwe nekin. Em di nav heftê de bi rêvebiriya tîmê re civînek lidar dixin û biryarê distînin." Şiro derbarê maça Gebzesporê de daxuyand ku ew nikarin pozisyonan bikin gol. Şiro got, " Kêmasiya me ya herî mezin ev e, em gelek pozisyonan dibînin lê nikarin golê bavêjin. Me 4-5 pozisyonên balkês dîtin, lê hemû ji dest çûn. Lewma me du puan winda kirin."

Buyukşehir Belediyespor di lîga 3.min de, di rêza 7.mîn de ye û 21 puanên wê hene.

### Bêhnvedan bi kêrê wan hat

Jiber ku di 2. Lîga Spor Totoyê Koma Spî de 17 tîm dileyîzin, her heftê tîmek bêhnvedanê dike, vê heftê dora Diyarbakirsporê bû. Li gor fikstura lîgê Diyarbakirspor hefteya 11. vala derbas kir û ev jî bû fersend ku rewşa leystikvanên birîndar (Hikmet, Hasan İnci, Cemal) baş bibe û çendîn kêmasî bên çareserkirin. Di hefteya 12.mîn de Diyarbakirspor roja yekşemê li deplasmanê bi Gaziosmanpaşaspor re dileyîze. Diyarbakirspor xwe hewl dide ku hemû kadroya xwe bo vê maçê amade bike.

Diyarbakirspor di lîga 2.min de, di rêza 15.mîn de ye û tenê 7 puanên wê hene.

Yek ji tîmên Amedê jî Erganispor e ku ew jî niha di rewşeke xirab de ye. Hefta borî di saheya xwe de ligel Keçiorengucu leyîst û 0-3 têk çû. Erganispor di lîga 3.min de, di rêza 18.mîn de ye û tenê 9 puanên wê hene.






Wêne: Andrea Huber

## Li Munchenê şanoya dokumenter ya almanî û kurdî

# Projeya Munchen - Amed

**Reşad Ozkan** München

Li gor agahiyên derhênera Projeya Munchen-Amedê Christine Umpfenbach wan xwestiye herdu şano bihev re di çerçovaya 50. saliya koçberiya Kurd û Tirkan de li Munchenê pêşkêş bikin lê got, "Şanoya Dewleta Tirkiyeyê ji ber berjewêndiyên siyasî destê xwe ji kar kişand û Şanoya Munchenê tenê hişt. Amed nebû, lê em ê şano li Munchenê pêşkêş bikin."

Şanoya almanî û kurdî di rojên 1., 3. û 4ên Kanûnê de di saet 20:00 de di salona Werkraumê de tê ser dîkên şanoya Munchener-Kammerspiele. Leystikvan Gulbahar Arslan, Rozerin Arslan, Lasse Myhr, Çigdem Teke, Christine Umpfenbach, Malte Jelden, Karnik Gregorian e û rejiya şanoyê Christine Umpfenbach dike, herwiha karên din jî wek kostum û teknîkî ji aliyê Jil Bertermann, Bettina Werner, Karnik Gregorian, Malte Jelden, Werger Tunay Onder, Sabrina Schmidt tê kirin.

### Nexwestin dramaya malbata kurd hebe

Di Çileya 2007ê de Şanoya Şaredariya Munchenê (Kammerspiele) bo tevlîbûna projeyek ji Şanoya Dewleta Tirk (Devlet Tiyatrosu) ya li Amedê teklîfekê digre.

Nêzikî 3 salan herdu şano bi alîkariya Enstîtûya Gothe li formek digerin. Di Hezîrana îsal de tîmekî şanoya Munchenê serdana Enqerê û Amedê dike. Di çentê tîmê de çîroka koçberiya malbatek kurd ji Munchenê û kokdamarên wan ên li Amedê hene. Herdu şano, diviyabû bo avakirin û pêşkêşkirina li Munchenê û Amedê, bihev re li ser konseptekê kar bikin.

Lo gor agahiyên ku derhênera Projeya Munchen-Amedê Christine Umpfenbach dan, diviyabû herdu şanoyan bihev re projeya Şanoya Munchen-Amedê pêşkeşbikira, lê belê Şanoya Dewleta Tirk, destê xwe ji kar dikişîne û şanoya Munchenê tenê dihêle. Umpfenbach wiha dom dike: "Me pêşî nezanî ku armanca wan têkçûna projeyê ye. Di serî de têkiliyên me baş diçûn. Em çûn Enqerê û ji wir me berê xwe da Amedê. Rêvebirên Devlet Tiyatrosu ya Amedê ji me re gotin, 'jiber ku jiyana malbatek kurd tê ser sahnê û qala işkence û binçavkirinên siyasî tên kirin, biborînin em nikarin bi we re kar bikin. Li gor talimata ku ji Enqarê hatiye, divê em hevkariya xwe bi we re qut bikin.' Em şok bûn û paşê vegeriyan Munchenê."


Wêne: Rûdaw

Karnik Gregorian, Malte Jelden û Christine Umpfenbach

Dramaturgê projeya Şanoya Munchenê Malte Jelden jî bo Rûdawê got bi çi awayî bibê ew ê karê xwe dombikin û li Munchenê lîstike bînin ser sahnê. "Daxwaza rêvebirên Şanoya Dewleta Tirk li Enqerê ew bû ku em jî dest ji wê projeyê berdin. Wan nedixwest rewşa kurdan li Amed û Munchenê bê ser sahnê û hewl dan projeya me sansûr bikin. Li gor me tiştên ku wan dixwest li dijî azadiya hunermendiyê bû. Em dixwazin nîşanî temaşevanên xwe bidin ka çima malbata kurd ji Amedê barkiriye Munchenê. Em li Amedê li hîmên malbata kurd digerin."

Jiber di wê demê de li Amedê û derdora wê tansiyona siyasî herku diçû bilind dibû, rêviberên Enstîtûya Gothe biryara Enqere ji xwe re wek tehluke dibînin û destê xwe ji karê projeya Şano ya Munchen-Amedê dikişînin. Tîma Munchenê dev ji Amedê berdide lê dest ji projeya xwe bernade û karê xwe berdewam dike û di rojên 1., 3. û 4ên vê mehê de şanoya bi navê "Munchen – Amed" wê li salona Şanoya Şaredariya Munchenê, di Maximilianstraße 28ê de bo temaşevanan bê pêşkeşkirin.

### Naveroka lîstika şano

Nifûsa Amedê nêzikî 2 milyon in. Ji sedî 80ê rûniştevanê bajêr kurd in. Bêkarî pir bilind e. Bandorên şer li ser mirovan berdewam dike. Zordarî û siyaseta cuntaya 1980ê li ser Amedê û civaka kurd bi çavan tên dîtin. Li derdor û hundirê bajêr leşker, polîs û tanq digerin, gel ji aliyê dewletê ve tê kontrol kirin. Bajar wekî şîr di beroşê de dikele. Teqîn nêzîk e. Binçavkirin û îşkence bûyerên rojane ne.

Di heman demê de çîroka Gulbahar û a malbata wê – ji ber pirsgirêkên siyasî welatê xwe terikandiye - tê nîşandan. Munchen – Amed dîrokek ya jihevdurkirin û cûdabûnê ye. Munchen – Amed dîroka têkoşîna bo nasnameya kurdî li Almanya û li Tirkiyeyê ye. Herwiha dîroka lihevhatina Kurd û Tirkan e jî. Videovanê projeyê Karnik Gregorian dibejê: "Eger ev şano tenê li Munchenê jî bê pêşkeşkirin divê li hemû Almanyayê bê fahmkirin."



Şefê îstîxbarata Yekîtiya Sovyetê, Pavel Sudoplatov:

# ‘Di hişê Mistefa Barzanî de Kurdistaneke yekpare hebû’

Bawer Cem Amed

Şefê îstîxbaratê yê Yekîtiya Sovyetê, Pavel Sudoplatov, di pirtûka xwe ya autobiyografî de dibêje ku serokê berê yê PDKê Mele Mistefa Barzanî dixwest pêşî li Îraqê Kurdistanekê ava bike û piştre 3 perçeyên Kurdistanê jî serxwebûna xwe bi dest bixin û tevlî Kurdistana Îraqê bibin.

Nivîskarê kurd Mustafa Aydogan ji pirtûka şefê îstîxbaratê yê Yekîtiya Sovyetê, Pavel Sudoplatov, hin rûpelên derbarê Mele Misefa Barzanî de ji swêdî wergerandine tirkî ku di wan rûpelan de Pavel Sudoplatov derbarê Barzanî de behsa bîranînên xwe dike.

Di bîranînên Sudoplatov de tê gotin ku amerîkî û îngilîzan xiyanet li Mele Mistefa Barzanî kirine û piştî dek û dolabên Şahê Îranê neçar maye welatê xwe terk bike û bi eşîretên girêdayî xwe ve ji sînorê Îranê derbas bibe û berê xwe bide Azerbaycanê. Di dema çûna Barzanî ya Azerbaycanê de şefê îstîxbaratê Sudoplatov li ser navê îstîxbaratê diçe bi Barzanî re hevdîtinan dike. Sudoplatov bi bîr dixe ku cara yekemîn e ewê bi serokeşîrekî rastîn re hevdîtinan pêk bîne û wiha behsa vê hevdîtinê dike: “Bi qasî ku min fêm kir, Barzanî siyasetmedarekî bi qabîliyet û fermandarekî baş ê leşkerî bû. Wî ji min re diyar kir ku wan di 80 serhildanên Kurdan ên li Îran, Îraq û Tirkiyeyê de di 60 serhildanan de alîkarî ji Rûsyayê xwestine û her carê alîkariya cebilxane û çekan wergirtine. Ji ber vê yekê jî di pêvajoyeke ku Komara Demokratîk a Kurd [Behsa Komara Mahabadê dike] ji aliyê leşkerên Şahê Îranê Muhammed Riza Pehlewî ve hate ruxandin de, xwestina wan a alîkariyê pir xwezayî ye.”

## ‘Barzanî nekete defika Şah’

Sudoplatov behsa xiyaneta Şahê Îranê ya li hemberî malbata Barzaniyan jî dike û destnîşan dike ku Barzanî nehatiye dek û dolaba Şah û wiha behsa vê mijarê dike: “Şah bi hinceta hevdîtinê bang li hemû xizmên Barzanî kiribû û yên ku çûbûn hevdîtinê hatibûn daliqandin. Şah ji bo hevdîtinê bang li Barzanî jî kiribû û xwestibû li Tehranê pê re rûnê. Lê Barzanî ji Şah re gotiye heta Şah ji malbata xwe çend kesan weke dîl neşîne biryargeha wî, ewê neçe hevdîtinê. Di pêvajoya nîqaşeke wiha de, beşeke mezin ji leşkerên Barzanî derbasî Yekîtiya Sovyetê bûn.” Şefê îstîxbaratê dide zanîn ku di wê demê de hin mirovên Barzanî ji Azerbaycanê derbasî Ermenistanê bûne û stasyoneke radyoya bi kurdî ava kirine.




## Armanca Barzanî Kurdistaneke yekparçe bû

Îstîxbaratvanê Sovyetê Sudoplatov di bîranîna xwe de destnîşan dike ku Mistefa Barzanî bi şertê ku Yekîtiya Sovyetê di navbera sînorên Tirkiye, Îraq û Îranê de piştgirî bide avakirina dewleteke serbixwe ya Kurdan, ewê bi Yekîtiya Sovyetê re hevpeymaniyeke polîtîk pêk bîne û wiha behsa Kurdan dike: “Heta dawiya salên 1940an, tena neteweya hevpaymana me li herêma Rojhilata Navîn Kurd bûn.”

Sudoplatov derbarê proje û armanca Barzanî ya avakirina Kurdistanê de, van agahiyan dide: “Wî serê pêşîn dixwest li Bakurê Îraqê komareke kurd ava bike. Piştre jî dixwest perçeyên li Tirkiye û Îranê jî serxwebûna xwe bi dest bixin û tevlî Komara Kurd ya ku wî ava kiriye bibin. Ev yek li gorî wî rasteqîntir bû.”

*Pavel Sudoplatov*
*Oprasyona taybet*
*Lubyanka û Kreml*
*1930-1950*
*Çapa 1. di 1997*

---

# “Berendamtiya *Grammy* bo me pir girîng e“



Xelatên Muzîkê yên Grammy wê di 12 Sibata 2012yê de li Los Angelesê bên belavkirin.

Azad Dîcle



Weke her sal ji bo xelatên muzîkê yên herî mezin ya cîhanê Grammy îsal jî solîst û grûbên berendam hatin diyarkirin û di nava wan berendaman de grûba navdar ya ku bi kurdî jî distire, Kardeş Turkuler jî heye. Berdevkê Kardeş Turkulerê Musa Goksel ji Rûdawê re ragehand ew di beşa Muzîka Cîhanê de ligel gelek band û kesên navdar wek berendameke xwediyê şansa zêde hatine diyar kirin û got, “Ev jî tê wê wateyê ku muzîka me cihê xwe dîtiye û niha jî rûmeta xwe dibîne.“

Xelata herî bi prestîj ya muzîkê Grammy her sal di meha sibatê de tê belavkirin. Îsal ji Tirkiyeyê grûbek û kesek wek berendam hatine nîşandan. Koma Kardeş Turkuler bi albuma xwe ya dawî Çocuk (H)Aklı (Aqilê Zarok, an Zarokê Xwedî Heq) di beşa muzîka cîhanê de û Kerem Gorsey jî di beşa jazzê de wek berendam hatinye nîşandan.

Berdevkê Kardeş Turkulerê Musa Goksel pirsên Rûdawê bersivandin û got muzîkên îngilizî zêde xelat digirin, “lê ji bo kategoriya muzîka cîhanê girîngiya ziman nîne.“

“Me miks ve masteringa albuma dawî li Amerikayê kir“

Goksel amaje da wê yekê ku wan xebatên teknîkî yên albumê wek mix û mastering li studoyoyên Capitol Records çêkirine û got piştî ku cara ewil album li Tirkiyeyê hatiye weşandin, li Amerrîkayê jî hatiye weşandin û bi îngilizî danasîna albumê wek pirtûkek piçûk hatiye kirin. Goksel got ku Capitol Records di hêla kaliteya muzikê de albumê baş ecibandine û derbarê nîşandana berendamtiya albumê de jî wiha got: “Hunermend û teknîsyenên Recording Academy yên ku li Capitol Records kar dikin albuma me bo Grammy wek berendam pêşniyaz kirin. Jiber ku tenê endamên vê akademiyê dikarin albuman bo Grammy pêşniyaz bikin. Komiteya bi vî karî re taybet jî berendamtiya albuma me pejirand û album di kategoriya ‘Best World Music Album‘ ango ‘Muzîka Herîbas Ya Cîhanê‘ kete lîsteyê.“

Heta sala borî di kategoriya muzîka cîhanê de du xelat hebûn, lê îsal tenê yek jategorî û yek xelat heye. Musa Goksel hebûna navê dîrektorê albumê Arto Tunçboyacıyan jî bo berendamtiyê girîng dibîne .

Ji bilî albuma Kardeş Turkuler îsal çendîn albumên girîng û hunermendên navdar di kategoriya "Muzîka Herîbas Ya Cîhanê" de cih digrin. Mînak albumên Addis Acoustic Project, Azam Ali, Amina Alaoui, Marta Gomez, Le Trio Joubran, û Yasmin Levy jî hene. Goksel pir giring dibîne ku navê koma wan ligel van navan di heman kategoriyê de cih digire û dibeje, " Ev jî dide xuyakirin ku em di hêla muzîkê de di asta bilind de ne. Lê tişta herî girîng ew e ku ne navê koma, lê muzîk û kultura welatê me di cîhanê de tên nasîn. Wek tê zanîn Koma Kardeş Turkuiler heta îro awaz û stranên Anatoliya, Mezopotamya, Trakya û Kafkasyayê vegotiye û li hemberê kultura yekdengî kultura pirdengî parastiye. Lewma eger em bibin nûnerê muzîka gelên tirk, kurd, ermenî, Laz, Çeçen, Çingene û em karibin kultura wan bi dinyayê bidin nasîn, ji bo karekî sanaziyê ye. Kultura vî welatî wisa dewlemend û pirdeng ê ku ti hêz nikare wê bike nava kultureke yekrengî. Lewma em berendamtiya Grammy pir girîng dibînin."



## Mahmut Alinak beriya bê girtin, pirs bersivandin:

# “Cihê çareseriyê ne Enqere ye“

*Kevneparlemenê kurd Mahmut Alinak hefta borî, demeke kurt beriya ku ji aliyên polîsên tirk ve bê girtin û li mala xwe li Stenbolê li benda polîsan bû, bersiva pirsên Rûdawê derbarê pêvajoya sîyasî de dan. Alinak BDP û parlementerên kurd bi tundî rexne kirin ku ew nikarin ji pêvajoyê re bibin bersiv û herwiha bang li PKKê jî kir ku xeta xwe ya şer di ber çavan re derbas bike. Alinak bo çareseriyê jî bal kişand ser pêwîstiya partiyek nû ya şoreşger û çalakiyên Neguhdariya Sivîl û got: Bila ti kes nasnameyan bi xwe re negerîne û hemû mêr bibin Mezin, jin jî bibin Zarîfe.*

**Rûdaw: Birêz Alinak, we di daxuyaniya xwe ya dawî de rexneyên tund li nûnerên Tevgera Kurd kirin û we got ku ew ne serkeftî ne û wek burokratan dixebitin. Sedemê van rexneyan çi ne?**

**Mahmut Alinak:** Belê, di rewşa dawî de ronî xuya dike ku rêbaza burokratiyê di Tevgera Kurd de xurt bûye. Wek giyana wan, rêbaza wan jî burokratî ye. Sedemê wê ev e: Ne baweriya wan bi şoreşê heye û ne jî pêdiviya wan. Jêrxaneya çîna wan xwe ji sîstema dewletê dûr naxe, bi şêweyek aşitiyane bi sîstemê re dijî, ew jî vê yekê dikin. Mirov dikare bi dehan mînak bidin: Partiyên siyasî yên ku Enqereyê wek cihê çareseriyê dibînin, nikarin pirsgirêka Kurdistanê çareser bikin. Hinek ji wan, ligel ku bi navê Abdullah Ocalan siyasetê dikin, nikarin li zindanê mafên wî yên hiqûqî jî biparêzin. Di demekê de ku dewlet di hemû operasyonên leşkerî de li dijî gerîlla çekên kimyewî bikartîne, di demekê de ku dewlet vî şerê neheq di bin navê "têkoşîna li dijî terorê" de dimeşîne, di demekê de ku bi hezaran siyasetvanên kurd ên sivîl hatine girtin, siyasetvanên kurd yên ku Enqere ji xwe re kirine baregeh, nikarin li hemberê van êrîşan rawestin û projeyên nû bidin pêşiya xwe.

**Eger projeyan nadin pêşiya xwe, gelo çi dikin?**

Ji bilî axaftinên xweş yên ku di mîkrofonan de dibêjin, ti tiştekî nakin. Ji xwe êdî ti kes bal nade daxuyaniyên wan jî. Nûnerên hikûmetê bi wan henekan dikin û ji wan re dibêjin "Ji xwe re dicivin, çay vedixwin û bela dibin", herwiha dibêjin "çawa bibe, ewê vegerin parlemenê" an jî Tayyip Erdogan bi zimanekî piçûkxistî bo wan dibêje "Ew li parlemenê bimînin çi ye, derkevin çi ye?" Ligel hemû tiştan, dema ku Abdullah Gul bang li wan dike, wê bêjin "dewlet dest bi diyalogê dike" û wê bazdin herin. Ev bîst sal in ku xeyala diyaloga bi dewletê re dikin. Bîstûyek sal berê ji me re gotin ku Amerîka vê buharê çareseriyê tîne. Buharê nebû, payîz hat dîsa nebû, gotin vê zivistanê. Demsal li dû hev derbas bûn, lê xeyalên me neqediyan.



Mahmut Alinak li Stenbolê beriya ku ji aliyê polîs ve bê girtin...

**Cihê çareseriyê ku ne Enqere û ne parlemen be, kû der e?**

Beriya her tiştî divê ev tişt bê ronîkirin: Ev dewlet ne ya Tirkên bindest e, dewleta pêkhatiyeke kêm e. Divê navekî nû jê re bê dîtin, yan jî wê gelê tirk, kedkarên tirk dewletê ya xwe bibînin. Dema ku rexne li dewletê bên kirin, wê rexneyan bigirin ser xwe û aciz bibin. Dewleta mêtînger ya kêm pêkhatiyek, ev nav ez bawer dikim herî rast e. Enqere ne cihê çareseriyê ye. Heta ku ev dewleta mêtînger ya kêm pêkhatiyek neçar nemîne wê tiştek çareser neke. Ev dewlet niha çareseriyê naxwaze. Wê hewl bide weke ku pêwendiyan dike, çareseriyê tîne. Mifteha çareseriyê îradeya sivîl ya gel e, Amed e, Colemerg e, Şirnex e... Ji Enqereyê ti car çareserî dernakeve. Wê hêza gel ya rêxistinkirî pirsgirêkê ber bi çareseriyê ve bibe û Enqere jî wê neçar bimîne çareser bike. Divê ti carê neyê ji bîr kirin ku mesele ne tenê ya ziman û kulturê ye. Ma gelo bindest û hejarên tirk pir şanaz in ku dema Kurd jî bibe xwediyê ziman û kultura xwe, kêfxweş bibe?

**Partiyên siyasî yên ku Enqereyê wek cihê çareseriyê dibînin, nikarin pirsgirêka Kurdistanê çareser bikin.**

**Ev bîst sal in ku xeyala diyaloga bi dewletê re dikin. Bîstûyek sal berê ji me re gotin ku Amerîka vê buharê çareseriyê tîne. Buharê nebû, payîz hat dîsa nebû, gotin vê zivistanê. Demsal li dû hev derbas bûn, lê xeyalên me neqediyan.**

**Gelo çareseriyeke bêyî PKKê mimkûn e? Herwiha partiyên siyasî yên din jî hene...**

Eger dewlet bixwaze dawî li ser bîne, divê bi PKKê re rûnê. Êdî zarok jî vê baş dizanin ku heta PKK wek muxatab neyê girtin, şer ranaweste. Çareseriyeke bêyî PKKê dibe? Belê dibe! Ew jî dema ku dewlet mafê xwe birêvebirinê, hemû mafên netewî bide gelê Kurdistanê û rêya wî ya desthilatdariyê veke. Wê demê jixwe wê PKK dev ji çekan berde, dakeve deşt û bajaran. Baş e, îradeyek wiha bi dewletê re heye? Na! Nexwe hemû gotinên derbarê çareseriyê de çewt in û derew in.

Em werin ser nûnertiya Kurdan û siyasetvanên wan, li derveyî PKKê. Ew tenê PKKê rexne dikin. bila PKKê rexne bikin, em nabêjin nekin, divê PKK ji gelek aliyan ve bê rexnekirin. Lê dema hûn hemû enerjiya xwe bo rexnekirina PKKê xerc bikin, hûnê dawiya hêza xwe bînin. Eger gotin û projeyek we hebin, fermo werin meydanê û bêjin, ji gel re çi dixwazin bêjin. Lê tiştên wiha nakin, tenê PKKê rexne dikin. Îro li meydanê tenê PKK heye, gel tenê wê dibîne. Bi baweriya min divê PKK xeta xwe ya şer di ber çavan re derbas bike, ji ber ku pêdivî bi tiştek wiha heye.

**Beriya hilbijartina 12ê Hezîranê we di hevpeyvînekê de bo Rûdawê got ku ‘Eger hikûmet ji bo çareseriyê gav navêje wê bûyerên tirsnak yên mezin rûbidin ’.**

**Mebesta we çi bû bi van gotinan û wê ji niha û şûnde çi bibin?**

Heta ku siyaseta sivîl a şoreşger hevsarê rojevê neke destê xwe, wê şer hinek caran raweste û hertim bidome û mixabin wê hertim xortên malbatên hejar bimirin. Heta ku Neguhdariya Sivîl negihije serhildana gel, ev pirsgirêk nayê çareserkirin. Hûn dikarin bêjin ka gelo ev mimkûn e? Belê mimkûn e! AKP û ew sîstema ku jê re nûnertiyê dike wê di nava mehekî de bibin wek zibil û winda bibin. Tişta kêm pêşengiya şoreşgerî ye.

**Siyaseta sivîl di vê demê de divê çi bike?**

Dikarin gelek projeyan bidin pêşiya xwe, sîstemê lawaz bikin. Ez çend mînakan bidim: Di warê aborî, civakî û siyasî de boykot; axaftina şagirtan li dibistanan bi mamosteyan re bila kurdî be; zarokên ku tên dinyayê bila neyên tomarkirin, bila ti zewacek neyê tomarkirin, bila ti kes li ser xwe nasnameyê negerîne, bila ti pirsgirêkekê nebin dadgehan, bila di dadgehan de navên xwe eşkere nekin. Bila di têkiliyên bi dewletê re tenê navek bê bikar anîn: Bo mêran Mezin, bo jinan Zarîfe.

**We çend roj berê jî got ku divê partiyek nû bê damezirandin. Bo çi?**

Belê, êdî pêwîstî bi partiyek şoreşger heye. Eger nebe, wê ev kaos bi deh salan bidome û gelek kes jiyana xwe ji dest bidin. Siyaseta sivîl a şoreşger bi rawestandina xwînê û karekî dîrokî re rû bi rû ye. Partiya ku bê damezirandin divê di her alî de alternatîfan derxîne holê û sîstemê di hêlîna wê de têkbibe. Piştî pêvajoyeke rêxistinî ya kûrahî û ya ferehî, divê li Kurdistanê amadekariya referandûmekê bike. Paşê jî here ber deriyê Neteweyên Yekgirtî. Li wir wê bang li dinyayê bê kirin, dinya rakin ser lingan û hûnê binêrin wê zilam birevin kû derê...

**We xwest ku bibin berendam bo serokatiya BDPê lê we ev yek nekir. Çima?**

Min nekarî ez bendava li pêşiya Navenda Giştî derbas bikim, lewma nebûm berendam. Komîsyonê ji min re got, “Eger tu bibî berendam wê peyamên te bikevin pêşiya peyamên partiyê.” Min dijberiyek dît li hemberê berendamtiya xwe. Nexwestin ku zêde berendam hebin, lewma kongre kirin dezgeheke wek noterê. Ew berendamtiya min a dawî bû di jiyana min a siyasetê de.

***Hevpeyvîn: Medya Deniz***



**Nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Awistirya, Dr. Mistefa Remezan:**

# Ewropayî li bazaran digerin û Herêma Kurdistanê jî bazarekî girîng e

> Awistiryayî dixwazin têkiliyên me demdirêj bin û şîrketên wan di demê pêwîstiyê de alîkariya me bikin.

*Nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Awistiryayê behsa hûrkariyên gotûbêjên karbidestên Herêma Kurdistanê ligel şanda Hikûmeta Awistiryayê kir ku heftiya borî Cîgirê Serokwezîr û Wezîrê Derve yê vî welati Michael Spindelegger serdana Hewlêrê kirin. Li gor vî nûnerî, girîngtirîn babeta gotûbêjan beşdariya Herêma Kurdistanê bû di projeya Nabucco de ku gaza siruştî digihîne Ewropayê.*

**Rûdaw: Hatina wê şanda bilind a Awistiryeyê bo Hewlêrê çawa bû?**

**Dr. Mistefa Remezan:** Heta niha çend caran şandên bazirganiyên Awistiryayê hatine vir, lê li ser asta siyasî ev cara yekemîn e ku Cîgirê Serkwezîran û Wezîrê Derve yê Awistirya serdana Herêma Kurdistanê dike. Ev şand gelekî kêfxweş bûn û ev pêşketina li Kurdistanê gelekî ecibandin. Wan çend rûniştin ligel Serokê Herêma Kurdistanê, Serokê Parlamen û Serokê Hikûmetê encam dan û derbarê Kurdistanê boçûnek gelekî pozîtîv li cem wan çêbû.

**Diyar e li Awistirya Balyozê Îraqê û Nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî Kurd in. Ev şand çû Bexda û paşî hat Hewlêr, ev serdan bi hewl û xebitîna we yan balyozxaneya Îraqê pêkhat?**

Nexêr, rayedarên Awistirya ji mêj bû dixwestin vê serdanê bikin, ji ber ku Îraq bi giştî û Herêma Kurdistanê bi taybetî bazarên mezin û girîng in. Niha li cîhanê bi giştî û Ewropa qeyrana bi şêweyekî taybet heye. Ew li bazaran digerin û ev der jî bo wan bazarekî baş e. Niha komeke şîrketên Awistiryayî li Herêma Kurdistanê di warê neftê û warên din de kar dikin. Herdu odeyên bazirganî yên Awistirya û Herêma Kurdistanê lihev kirin bo vê yekê û me jî weke Balyozxaneya Îraqê û Nûnertiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Awistirya hevkarî kir bo organîzekirina programa vê serdanê.

**Li ser çi li hev hatin?**

Ez nebawerim ku ti lihevhatin di rojekê de pêkbê. Lê têkiliya navbera herdu odeyên bazirganî de tiştekî pêktîne bo avakirina têkiliyên navbera şîrketan jî. Awistiryayî gelekî dakokiyê ser wê yekê dikin ku ev têkilî divê dûvçûn jê re hebe û bighîje wê yekê ku şîrketên wan di demê pêwîstiyê de alîkariya me bikin.

**Dikarin ji kîjan alî alîkariya Herêma Kurdistanê bikin?**

Bêtir di warê çandinî û turizmê de, herwiha di warê neft û gazê de ku meseleya herî girîng e li cem welatên Ewropayî bi giştî û Awistiryayê bi taybetî ku serperiştiya projeya Nabucco dikin, ev projeya ku gazê bi rêya lûliyan di Tirkiyeyê re derbasî Ewropa dikin. Ew dixwazin Herêma Kurdistanê jî bi vê projeyê girêbidin. Ew derbarê vê yekê gelekî axivîne û berî niha jî ev hatiye behskirin. Ew dixwazin di demên nêzîk de careke din ligel Rayedarên Hikûmeta Herêma Kurdistanê rûnin da ku eger pirsgirêk û astengî hebin ji holê rakin û bighîjin encamekê ku berjewenda herdu aliyan tê de be. Ev yek ji wan xalên girîng bûn ku di vê serdanê de hatin behs kirin.



Wêne: Rûdaw




**Tiştê we ji van gotûbêjan fahm kir, Herêma Kurdistanê dikare bi şêweyekî serbixwe lihevhatinê çêke bo beşdarîkirina di vê projeyê de. Gelo Îraq û Tirkiye nabin asteng?**

Em ê hewl bidin ev tişt bi razîbûna Hikûmeta Îraqê jî be. Em hêvîdarim ku em ligel Hikûmeta Bexda bigîhin encamekê. Ji xwe eger em negihan ti encaman wê demê li gor destûrê Herêma Kurdistanê ev maf heye ku pêngaveke ji vê corê bavêje. Lê hêviya ku ev proje bi razîbûna Bexda pêkbê, her maye.

**Herêma Kurdistanê têkiliyên baş ligel Awistirya hene û Serokkomarê wî welatî xwe weke dostê Kurdan dizane. Lê pirs ev e çima awistiryayî dereng man di hatina bo Herêma Kurdistanê?**

Awistirya ji wan welatan e ku di serî de gelekî alîkariya Kurdan kiriye, têkiliyên baş ligel serkirdeyên siyasî yên kurd bi giştî hebûn. Şîrketên Ewropa bi şêweyekî giştî hinekî bi hişyarî ligel Îraqê tevdigeriyan. Me gelekî hewl da em bo wan ronî bikin ku rewşa Kurdistanê cuda ye ji navçeyên din ên Îraqê. Paşî hin mijaran wisa kir ku ev bawerî li cem wan çêbibe. Tevî vê jî şîrketên Awistirya gelekî dereng nemane, ji ber ku Hêla Asimanî a Awistirya ji hêlên yekemîn ên asimanî bû ku di sala 2006ê de geştên asimanî navbera Hewlêr û Viyenna destpêkir, vê jî deriyekî gelekî mezin bo me vekir. Berê pêwîst bû em biçin Emmanê, yan Tirkiyeyê û ji wir biçin Ewropayê. Ev bû sedem ku gelek şîrketên ewrûpî û amerîkî, herwiha şandên fermiyên siyasî rasterast bên Hewlêrê dakevin. Herwiha şîrketên Awistiryayê yên neftê ji mêjde li Kurdistanê dixebitin.

**Berpirsên kurd û ji wan Serokê Herêma Kurdistanê bi şêweyên fermî û nefermî serdana Awistiryayê dikin. Gelo sedema vê çi ye?**

Wek min got ji mêjde têkiliyên Awistirya ligel Kurdan baş bûn. Yekemîn grûba kurdan ku di sala 1976ê de çûn derveyî welat ji aliyê Awistirya hatin pêşwazîkirin û mafê penaberiyê dan wan. Ez yek ji wan kesan bûm ku di sala 1976ê de weke penaber li wir mame. Mimkûn e sedema hatinûçûyîna rayedarên kurd bo Awistirya ew be ku navbera Hewlêr û Viyenna hêla asimanî ya rasterast heye.

**Tevî vê têkiliya baş a ku hûn behs dikî, lê hejmara penaberên kurd li Awistirya li gor gellek welatên din ên Ewrûpî kêm e. Sedema vê çi ye?**

Awistirya bi şêweyekî taqlîdî welatê penaberan bû bo dewletên sosyalîstên berê, lê ne ji bo welatên Rojhilata Navîn. Lê ji zûde rewşa penaberan li Awistirya baş nebû, loma bêtiriya penaberan ku dihatin Awistirya dema didîtin ku rewşa penaberan li welatên din ên weke Îskendinavya gelekî baştir e êdî ew diçûn wir û nediman li vir. Kesê ku li Awistirya dima sedemên wî yên taybetî hebûn, lê ne girêdayî wê yekê nebû ku Awistirya polîtîkayeke taybet hember Kurdan dide meşandin. Awistirya bi xwe welatekî biçûk e û îmkanên aborî yên weke Almanya nînin.

**Gelo di serdana vê şandê de ti vexwendin bo Serokê Herêma Kurdistanê yan Serokê Hikûmetê hebû ku serdana Awistirya bikin?**

Ew bi xwe gelekî hez dikin û Cîgirê Serokwezîran û Wezîrê Derve di rûniştinekê de got ez ê Berpirsê Fermangeha Têkiliyên Derve yên Herêma Kurdistanê û şandeke aborî vexwînim da di van nêzîkan de serdana Awistirya bikin.



# Di 13 saliya wê de 26 mêran destdirêjiya wê kirin

Li Swêdê gelek rêxistin, komele, parlementer û rewşenbîrên ji neteweyên cuda li dijî biryara Dadgeha Bilind a Tirkiyeyê ya derbarê keçikek 13 salî ku ji aliyê 26 mêran ve hatiye tecawûz kirin, dengên xwe kirin yek û di nameyekî de nerazîbûna xwe dîyar kirin.

Hefta borî Dadgeha Bilind a Tirkiyeyê biryara dadgeha herêmî ya derbarê N.Ç'ya 13 salî de pejirand. Li Mêrdînê di sala 2004ê de 26 mêran dest dirêjê N.Ç'ya 13 salî kiribûn û li kesên tewanbar cezayên herî kêm hatin birîn, çend ji wan jî serbest hatine berdan. Ev 26 kes jî karmendên dewletê ne, wek serbaz, leşker, nobedar, cerdevan, mamoste û hwd. Dadgeha herêmî ji bo keçikê jî biryar dabû ku ew ji bo pereyan, bi dilê xwe bi wan 26 mêran re raketiye.

## Nameya keçikek kurd digîhe her derê

Nergiz Yildiz li Swêdê dijî û dema wê ji vê bûyerê bihîst, wê bi xwe agahiyên li ser bûyerê kom kirin û wek nameyekê li derdora xwe belav kirin. Yek ji wan nameyan digîhe destê rêxistinek parastina jinan. Berpirsa Rêxistinek Parastina Jinan, Amîna Kakabaweh ku ji Rojhilatê Kurdistanê ye û ser navê Partiya Çep di parlemenê de rûniştiye, ji Radyoya Swêdê beşa kurdî Zayele re ragihand ku wê ev name ji gelek rêxistin û komeleyan, siyasetmedar û rewşenbîran re şandiye, navê wan di lîsteyek de kom kiriye û niha dixwaze bişîne Komeleya Mafê Mirovan, herwiha ji Konseya Ewropayê re.

Kakabaweh dide zanîn ku ev ne meseleya Kurd û Tirkan û ya neteweyekê din e û got, "Ev meseleya hemû jin û zarokan e. Her kesek biwijdan divê li dijî biryarek wiha derkevin heta ku ev biryar bê hilweşandin."

Aminah Kakabaweh dipirse ku eger dewletek nikare zarokek 13 salî biparêze, wê hevwelatiyên xwe çawa bikare biparêze.

## Navên cûda di lîsteyê de hene

Navê gelek parlementerên navdar jî di lîsteya piştgiriyê de hene. Bodil Cebullosê ji Partiya Jîngehê ku bi xwe ji herêma Katalan li Spanyayê ye, dibêje ku keçik Kurd e û dibe ku vê yekê bandor li ser biryarê kiribe. "Swêd ji hemûyan bêtir dixwaze ku Tirkiye tevlî Yekîtiya Ewropayê bibe, lewma Swêd dikare bandorê li Tirkiyeyê bike ku qanûnên xwe biguherînê. Kurd di Parlemena Swêdê de gelek in, eger ew bi van çalakiyan helwest û daxwaziyên xwe bigihînin parlementoyê, em ê jî piştgiriya wan bikin." Bodil Ceballos di axaftina xwe de bal kişand ser yasayên Tirkiyeyê û got eger pergala wan ya dadê hebe û biryarek wiha jê derçûbe, ev tê wateya ku niha dema guherîna qanûna wan e û nabe mirov wiha li hemberê zarokekê biryaran bistîne.

Rêxistina Giştî ya Nobedariya Keç û Jinan jî yek ji wan rêxistinan e û doza keçika 13 salî dişopîne. Seroka wê rêxistinê Angela Beusang jî matmayîna xwe tînê zimên û dibêje ku ev biryar divê bê îtiraz kirin û carek din doz bê vekirin, ji ber ku ew li dijê Hevpeymaniya Konseya Ewropayê ye: "Biryarek wisa naye qebûlkirin. Ti zarokek 13 salî nikare bi dilê xwe bê tecawûz kirin, ev egerek pêkenokî ye! Ez mereq dikim, ka keçik dikare dîsa wek mirovek bijî gelo?"

## Dadgeh: Bi dilê keçikê bû!

Dadgeha Bilind a Tirkiyeyê jî biryar girt ku ji ber bûyer bi dilê keçikê bûye, biryar li gor qanûnê hatiye dayîn, lewra destdirêjî bi tundutujî û zordarî çênebûye.

24 ji wan mêran 5 sal, ku di asta herî nizm ya tawana tecawûzê de ye, ceza wergirtine û dûre cezayê wan ji 5 salan daket 4 sal 2 mehan. Li mêrekî ku di jêr 18 salan de ye jî cezayekî 3 sal 2 mehî hate birîn. Li gor Qanûna Ceza ya Tirkiyeyê, paragrafa 414. benda 1ê: "Kesekî ku tecawûzê biçûkek di bin 15 salî de bike, cezayekî ji 5 salan kêmtir nabe werbigirin". Ango dadgehê biryarê wek "keçik bi dilê xwe laşê xwe firotiye" pejirandiye.

Hate zanîn ku keçika navborî niha li zaningehekê beşa hiquqê dixwîne. Nergiz Yildiz got, "Xuya ye ku wê bi qedera xwe dizaniya û dixwaze mafê xwe bi xwe biparêze."

---

Li Silêmaniyê di sê salan de

# 1409 mêr ji ber tawanên dijî jinan hatine girtin

Newzad Mehmûd

Li gor statîstîkek Rêvebeiriya Dûvçûna Tundûtîjiya Dijî Jinan li Silêmaniyê, di sê salên borî de hejmareke gelek mezin a tawanên cûrbicûr û tûndiya hember jin û keçan pêkhatiye û sal bi sal ev hejmar bilind dibin.

Li gor wê statîstîkê li Parêzgeha Silêmaniyê di salên 2008, 2009 û 2010ê de 1409 mêr bi tawana tûndûtijiya dijî jinan ji aliyê polîsan hatine girtin, herwiha 1009 mêr jî ku gilî li wan hatiye kirin lê nehatine girtin. Rêvebirê Dûvçûna Tundûtîjiya Dijî Jinan li Silêmaniyê ragehand: "Mêrên ku nehatine girtin hejmareke wan a kêm ji yasayê reviyane, lê bêtirî wan jî ji ber ku keysên wan berê hatine yekalî kirin û çareserkirin, pêwîst nebû ew bên girtin."

## 9 mêr ji ber destdirêjîkirina ser jinan hatine girtin

Her di heman statîstîkê de diyar dibe ku di mawê van sê salan de 20 jin û keç hatine revandin (di sala 2008ê de 11 jin, di sala 2009ê de 3 jin û di sala borî de jî 6 keç û jin li Silêmaniyê hatine revandin) her di wan sê salan de destdirêjî ser 17 jin û keç jî hatiye kirin ku tenê 9 kesên destdirêjker hatine girtin.

Kejal Mihemmed ku parêzereke li Dadgeha Tawanên Silêmaniyê, behsa bûyerên kuştina jinan û tûndûtîjiya dijî jinan dike û dibêje "em hest dikin ku di van salên dawî de dadgeh ji pirsgirêkên jinan tije bûye. Rojane çend keys tên ber sînga dadwer." Kejal Mihemed derbarê negirtina kujerên jinan jî red dike ku dadgeh û polîs xemsar bin: "Biryara girtina hemûya derketiye, lê ji ber ku hinek ji wan xwe veşartine yan çûne derve, girtina wan dereng dimîne."

---



# Helwesta serok Barzanî hêviyek xurt diafirîne

Mahmut Kilinc

Di mijarên siyasî de, taybetî yên bi qadên navneteweyî ve têkildar, eger firsendên derketî di demê de bi kar neyên, carek din bidestxistina van firsendan pirrî caran ne pêkan e, an jî bedelên giran divê.

Di dîroka miletê kurd de gellek mînakên vê hene. Hemî bi êş û keder in. Mînaka herî balkêş firsenda ku bi Peymana Sêvresê derketî bû. Wê demê dinya di nav aloziyêkê de bû, dagirkerê Kurdistanê Împaratoriya Osmanî têk çûbû û Dewletên Îttilaf bi çar hêlan ve Tirkiye dakir kiribûn. Li Fransayê û li bajarê Sêvresê peymanek hat îmza kirin, li gor vê peymanê Kurdistanek otonom wê bihate damezrandin, piştê salekê eger miletê kurd bixwesta, ew dibû dewletek serbixwe. Firsendek wisa dîrokî rû dabû, lê Kurd li bendê man ku Dewletên Îttilaf peymanê cibicih bikin, bi xwe fisend bi kar neanîn û mixabin ji dest çû.

Gelo mirov dikane bêje ku derfetek wisa wê carek din bê ber deriyê Kurdan? Îro carek din firsendek hêdî hêdî berbi deriyê miletê kurd ve tê. Helbet ne mîna wê demê ku di hindurê çend salan de bi encam bibe, wisa dixuyê ku ewê dirêj bajo, lê êdî aj daye. Ew derfet îro li ber deriyê Rojavayê Kurdistanê ye. Her roj gavek din nêzik dibe. Him rewşa hindurê Sûriyê û him jî şert û mercên navneteweyî firsendekê dibexşînin. Yekem, hêzên navneteweyî bi biryarî hewl didin ku rejîma Sûriyê biruxe. Dewletên têkildar di pirsgirêka Lîbyayê de, nîşan dan ew bi biryar in, daku bi hemî derfetên xwe ve piştevaniya muxalefeta Sûriyê bikin.

**Divê tevgera Rojavayê Kurdistanê jî bi berpirsyariya xwe ya dîrokî rabe û vê firsendê di demê û cih de bi kar bîne.**

Kurd jî ne wekî bîst salên berê bêxwedî ne. Parçeyek ji welatê me, her çiqas ne tam be jî, azad e, derfet di dest de hene û eger li ser mijarê bi siyasetek neteweyî rawestin, ne dûr e ku encamek serketî bi dest bikeve.

Jixwe pêşveçûnên li Rojhilata Navîn rolekî dîrokî dide ser milê Kurdan, divê li rola xwe xwedî derkevin. Civîna serok Barzanî ya bi serkirdayetiya Encûmena Niştimanî ya Kurd li Sûriyê bi gellek hêlan ve pirr girîng e. Lewra ew civîn him ji bo hêzên têkildarê pirsgirêka Sûriyê û him jî bona muxalifan peyam e ku Kurd ne bêxwedî ne û ew naxwazin firsenda dîrokî ji dest birevînin, mafê çarenûsa xwe dixwazin.

Peyama serok Barzanî ya ku dibêje “ew ji nêzîk ve rewşa Kurdistana Sûriyê têdigihin û tiştê lazim û ji wan tê xwestin ewê bi rola xwe ya dîrokî rabin”, ew helwesta Başûrê Kurdistanê him bona gel û him jî bona tevgera Rojavayê Kurdistanê piştevaniyek dîrokî ye. Her Kurdên ku xwedan aqil û îzan in, ewê destketiyên Başûrê Kurdistanê wek çavê xwe biparêzin, lê bi qasî vê rastiyek din jî heye, ku bona çareserkirina pirgirêkên parçeyên din divê Başûrê Kurdistanê jî bi berpirsyariya xwe tevbigere. Encamên vê tên dîtin û ew cihê kêfxweşiyê ye. Siyaset û helwestek wisa wê bi giştî bi kêrî çareserkirina pirsgirêka Kurdistanê bê. Serdana serok Barzanî ya Tirkiyeyê û helwesta wî nîşana vê ya herî balkêş e. Ew helwest bona Rojavayê Kurdistanê jî dibe cihê dilxweşiyê. Lê divê tevgera Rojavayê Kurdistanê jî bi berpirsyariya xwe ya dîrokî rabe û vê firsendê di demê û cih de bi kar bîne.



# Şoreşa li Sûriyê û helwesta PKKê

Sîrwan H. Berko

Çi cara ku berpirsek ji berpirsên PKKê li ser bûyerên li Sûriyê diaxive, peyva wî ya yekem ev e: Hikûmeta Tirkiyeyê naxwaze ku Kurdên li Sûriyê mafên xwe bi dest bixin. Cara dawî ku berpirsekî PKKê ev gotin dubare kir, berî çend rojan di rojnameya kurdî ya heftane “Rûdaw” de bû. Li ser pirseke rojnameyê li ser bûyerên li Sûriyê, Ahmet Turk got: “...Tirkiye jî piştgiriya guherînê li Sûriyê dike, lê bi şertê ku Kurd li Sûriyê mafên xwe bi dest nexin.” Çend hefteyan beriya vê gotina Ahmet Turk, herdu berpirsên PKKê Duran Kalkan û Cemîl Bayik jî êrîşî hikûmeta tirkî kirin û gotin ku PKK li Sûriyê şerê AKPê dike û PKK wê şerê Tirkiyeyê bike, eger ew destên xwe bixe nav karûbarên Sûriyê. Ji aliyê xwe ve Partiya Yekîtiya Demokrat (PYD) berdewam îdîa dike ku di navbera hikûmeta AKPê û rêxistina Biraderên Misilman de peymaneke nehênî hatiye îmzekirin ku li gor wê Biraderên Misilman soz daye AKPê ku rê li ber mafên Kurdan li Sûriyê bigirin. Heta roja îro PKK/PYDê belgeyên van îdîayên xwe pêşkêşî raya giştî nekirine.

Ne veşartî ye ku PKK dixwaze herêmên kurdî li Sûriyê ji bo şerê xwe yê li dijî Tirkiyeyê bi kar bîne. Herweha ne veşartî ye ku azadî û desthilata ku PYDê li Sûriyê bi dest xistine, ti partiyeke kurdî û sûrî yên din bi dest nexistine. Ne tenê serokê PYDê û hejmareke mezin ji şervanên PKK/PYDê piştî destpêka bûyerên li Sûriyê vegeriyan qada xebatê li Sûriyê. Bi salan bû ku ev qad li PKK/PYDê hatibû qedexekirin. Di encama wê de endam û alîgerên PKK/PYDê bûbûn armanca girtin, îşkencekirin û cezayên giran di zindanên rêjîma Sûriyê de. Bi vê yekê rêjîma Sûriyê erkê xwe yê di “Peymana Adanayê” de destnîşankirî, ku ev peyman di Cotmeha 1998ê de di navbera rêjîma Hafiz el-Esed û hikûmeta tirkî de hatibû imzekirin, bi cî dianî.

**Nema tê pejirandin ku PKK xwe wek gelê kurd bibîne, ango çi siyaseta li dijî PKKê wek rêxistin be, nayê wê wateyê ku ew li dijî gelê kurd e. Partî û gel du tiştên ji hev cuda ne.**

Lê piştî ku helwesta hikûmeta AKPê beramberî bûyerên li Sûriyê guherî û rêjîma Beşar el-Esed Tirkiye wek tehdîd dît, wê dîsa peywendiyên xwe yên bi PKKê re vegerandin asta dema ku PKK û serokê wê Abdullah Ocalan li Sûriyê bûn. Rêjîma Sûriyê dîsa karta PKKê li dijî Tirkiyeyê bi kar tîne û PKK jî ji vê lîstikê re amade ye. Ew di wê baweriyê de ye ku ewê qezenc bike, rewşa li Sûriyê ber bi kîjan alî ve jî biçe.

PKKê ti carî beşê Kurdistanê li Sûriyê wek beşek nedîtiye. Hîn dema Ocalan li Sûriyê bû, wî digot ku Kurdên ji Sûriyê bi eslên xwe koçberên ji Kurdistana Tirkiyeyê ne û gerek ew dîsa vegerin deverên ku ew jê hatine. Ocalan ev gotin di parastina xwe ya li pêşiya dadgeha tirkî dubare kir. Û dema PKKê biryar da ku li her perçeyekî Kurdistanê partiyekê damezirîne, wê di 2003ê de ji bo partiya li Kurdistana Sûriyê navê “Partiya Yekîtiya Demokrat” hilbijart. Navê partiya li Kurdistana Îraqê “Partiya Çareseriya Demokratîk a Kurdistanê” ye û navê partiya li Kurdistana Îranê “Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê” ye. Balkêş e ku di navê PYDê de ne peyva Kurd û ne jî ya Kurdistan heye. Gelo ev sudfe ye, yan biryareke bi mebest e?

Çima Ahmet Turk, Duran Kalkan û Cemîl Bayik şerê xwe yê li dijî dewleta tirk bi mafên Kurdan li Kurdistana Sûriyê ve girêdidin?

Herkes dizane ku hikûmeta tirkî naxwaze ku PKK herêmên kurdî li Sûriyê bike navendeke ji bo şerê li dijî dewleta tirk. Ku mirov li armancên partî û rêxistinên kurdî li Sûriyê binere, ti carî şerê li dijî Tirkiyeyê ne ji armancên Kurdên li Sûriyê bû. Gelê kurd li Sûriyê dixwaze di dewleta Sûriyê de bimîne û mafên xwe yên neteweyî di destûra Sûriyê de bi cî bike. Gelê kurd li Sûriyê doza azadî û aşitiyê dike. Ew piştgiriya doza gelê kurd li seranserî Kurdistanê ji bo mafên neteweyî yên kurdî dike. Lê gelê kurd li Sûriyê ti carî ne şer kiriye û ne jî dixwaze şer bike. Ew herweha naxwaze ku Kurdistana Sûriyê bibe qadek ji bo şerê li dijî Tirkiyeyê, yan ti dewleteke din. Dema şer ji mêj ve bi dawî hatiye. Herweha ew dem bi dawî hatiye ku pirsa kurdî li Sûriyê ji bo berjewendiyên hêzên kurdistanî bê bikaranîn. Herweha nema tê pejirandin ku PKK xwe wek gelê kurd bibîne, ango çi siyaseta li dijî PKKê wek rêxistin be, nayê wê wateyê ku ew li dijî gelê kurd e. Partî û gel du tiştên ji hev cuda ne.

Di dawiyê de pirsek ji bo Ahmet Turk û hevalên wî: Dema PKK û serokê wê Ocalan li Sûriyê bi azadî dixebitîn û çewisandina gelê kurd li Sûriyê berdewam bû, we çi dikir? Hingî jî mafên Kurdên li Sûriyê dihatin binpêkirin. Çima hingî deng ji we dernediket?

Dîrok ti carî nayê dubarekirin, mirov tenê dikare sûdê ji wê bigire. Ahmet Turk û PKK naxwazin vê rastiyê qebûl bikin.

# Rondik ji dêvla xwînê bo testkirina şekir



Kesên ku bi tevahî nexweşiya wan a şekir heye divê rojane ji du caran heya 10 caran xwîna wan bê testkirin bi mebesta zanîna asta şekirê wan, ew jî bi rêya anîna xwînê ji tiliyên wan, lê hinek kesên nexweş ji ber kar nikarin rojane testa xwînê çêkin.

Zanayên zanîngeha Michigan vêga alavek çêkirine ku dikare bi rêya testkirina rondikan asta şekir di mirov de bizane.

Lêkolîn li ser kîvroşkan hat kirin, di encamê de derket ku asta şekir di rondikan de bi asta şekir di xwîna heman kesî de, girêdayî ye.Lêkoler dibêjin dibe ku bikarin rojane çend caran asta glîkoz yanî şekirê rondikan bê pîvankirin bo çavnêrîkirina guherînên asta şekir di xwîna mirov de, bêyî ku kesê nexweş rojane çend caran azaran bikişîne ji dubarebûna xwînjêanîna ji tiliyan.

Doktor dibêjin daxwazên zêde hene bo dîtina cihgirekî bo wê neynûka tûj ku rojane di penceyan de tê kirin, ku ji ber wê dibe ku pencên qulkirî bi derbasbûna demê re rastî nazikiyê bên û herwiha hertim xetera kulbûna wan heye.

Testkirina rojane ya asta şekir di xwînê de pêwîst e bo wan kesên ku şekirê wan ji cûreya yekemîn heye û nikarin anolînê di laşên xwe de çêkin, tekane rêya saxlemiyê jî bo zanîna asta şekir di xwîna wan de û xwînjêanîna tiliyên wan e daku bê zanîn pêdiviya wan bi lêdana derziyên însolîn heye yan na, jiber ku ger asta şekir di xwîna wan de nizm be û însolîn jî werbigrin ew dibe daketina asta şekir û dûre jî bêhişbûnê û dibe jî ku bimirin ger neyên çareserkirin, lê şekirê cûreya duyemîn ku rêjeya nexweşên wê zêdetir e ji cûreya yekemîn, ger şekirê wan kontrol bikin êdî heftane carekê yan du caran pêdiviya wan bi testkirina xwînê heye bo zanîna asta şekir di xwîna wan de.



# Baştirîn dema di navbera ji dayikbûna du zarokan de 2 sal in



Li gor lêkolîneke Zanîngeha Rotterdam li Hollandayê, baştirîn dema di navbera jidayîkbûna du zarokên li pey hev, du sal in. Ew zarokên ku du salan piştî jidayikbûna bira yan xwişkên xwe ji dayîk dibin, zîrektir in, puanên bilindtir di ezmûnên matematîkê de bi dest dixin, herwiha di xwendin û dibistanan de jî li pêştir in ji yên ku kêmtir ji du salan piştî xwişk û birayên xwe hatine dinyayê.

Bo gihiştina encamên lêkolînê, zanayan lêkolîna xwe li ser 3 hezar jinan çêkirine ku 5 hezar cot zarokên wan hebûn ku temenê wan di navbera 5-7 salan de bû. Lêkoleran zarok xistine ezmûnên jîrî û matematîkê û têbînî kirin ku hebûna dema zêdeyî salekê rêjeyeke zîrekiyê ya zêdetir dide zarokê mezin.

Raya pispor û psîkologan jî wisa ye ku hebûna demekê di navbera du zarokên li pey hev, derfetê dide dêbavan ku demeke wan ya baş hebe ji bo perwerdekirina zarokên xwe di aliyê jîrî û giringîpêdanê, beriya jidayîkbûna zarokên din. Herwiha hebûna demekê di navbera du zarokan de dibe bîhnvedanek jî ji bo dayîkê bo başbûnê û jibîrçûna êş û azarên anîna zarokê.



## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Gul û çîçekek – Ciwanga, gayê ciwan – Di lîztika qelemaçan de hejmara yek. 2- Rastkirin, ahengkirin, gurandin – Ziman, devok. 3- Navekî Ereban – Notayek muzîkê (berepaş) – Revîya, çû, bezî (berepaş). 4- Yarmetî, pêrabûn, destdirêjî – Rêxistina Rizgarkirina Îrlanda, karakter – Tiştek têde tune, pûç. 5- Cûreyek xezalan – Qanûnî, dadî. 6- Bi Ingilîzî “dawî, xelas” – Nehat, li paş e, nayê. 7- Ne li ser e, bi xwe re nebir (berepaş) – Bextewar, dilxweş. 8- Baş, çak, qenc – Parçe, cîhgir, şûngirt. 9- Kêr û xencera devê tifingê. 10- Rêziman, rastnivîsandin û xwendin.

**Serejêr:** 1-Erdê ku nehatiye ajotin, erdê bej – Mirî, şehîd, kujtî (berepaş). 2- Herêm, hêlek ji welêt, parçeyê bi serê xwe. 3- Li ser mirîyan tê xwendin – Li Latîn Amerîkayê medenîyetek kevnare. 4- Kîn, nefret, qehr (berepaş) – Alîgir û tevkarê komele yan dezgehekê. 5- Welatek cîranê Rûsyayê – Kesê yekem (berepaş). 6- Pêveka pronavan (berepaş) – Desthilatdar, xwedî gotin, erkdar (berepaş). 7- Serok, serkirde – Safî, pak, zelal. 8- Karakter, xûy, sinc – Ap, mam – Ne nêzîk, dûdirêj. 9- Tûj, dişewitîne (berepaş) – Bejayî, şev, tarî (berepaş). 10- Xwelî, nîjadê Kurdan – Di dîrokê de dewletek Kurd. 11- Xweda, reb. 12- Hewa, maddeyek kîmyewî. 13- Ava girikî, ava cil û bergan. 14- Ereb li xwe dikin, konê mezin. 15- Vexwarinek serekî, bê wê jiyan nabe. 16- Nexweşîyek, epîlepsî.

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | ■ | | | | | | | ■ | | |
| 2 | | | | | | | | | | ■ | | | | | | |
| 3 | | | | | | ■ | | | ■ | | | | | | ■ | |
| 4 | | | | | | | | ■ | | | | ■ | | | | |
| 5 | | | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 6 | ■ | | ■ | | | | ■ | | | ■ | | | | | | |
| 7 | | ■ | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 8 | | | | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 9 | | ■ | | | | | | | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | | ■ | | ■ | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 123

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | K | E | R | A | M | E | T | ■ | Ş | Î | F | ■ | F | Î | N | E |
| 2 | A | V | A | K | I | R | I | N | ■ | N | A | T | Û | R | E | L |
| 3 | M | O | D | E | Z | A | N | ■ | K | A | L | E | M | Ê | R | ■ |
| 4 | B | R | E | D | ■ | P | ■ | M | O | D | E | R | A | T | O | R |
| 5 | A | ■ | S | ■ | E | K | Z | E | M | ■ | | | | | | |
| 6 | X | F | T | A | Z | F | R | ■ | R | A | | | | | | |
| 7 | Î | ■ | K | Î | M | Y | A | G | E | R | | | | | | |
| 8 | ■ | Ç | I | M | A | ■ | G | E | Ş | T | | | | | | |
| 9 | O | I | R | A | N | D | I | N | ■ | Ê | | | | | | |
| 10 | K | R | Î | L | Î | ■ | R | Î | A | Ş | | | | | | |

# Keywan rojbûna xwe di nava firokeyê de pîroz kir

Rojbûn an jî şahiya te ye û
tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu





Ez Keywan Mansur im, xelkê bajarê Hacî Qadirê Koyî (li başûrê Kurdistanê) me û niha li Almanyayê dijîm. Roja 25.10.2011 ez tevlî bav, dayîk û xwişka xwe em bi firokeyê firiyan Kurdistanê. Ev roj rojbûna min bû jî, lê ji bo min ev ducar bûyîn bû: carek ez rojbûyîna xwe pîroz dikim, ji aliyê din ve diçime seredana Kurdistanê. Her çiqasî ku ez carek din jî çûme Kurdistanê lê wê demê ez hêj biçûk bûm, min baş tişt nasnedikirin. Lê ev car bo min gellekî xweş bû. Ez dibim 10 salî lê hêj min biryar nedaye ezê pêşerojê bibim çi. Lê ez ji futbolê gellekî hezdikim û ez dixwazim xizmetek baş pêşkêşî xelkê xwe bikim.

Amedekirina rûpela zarokan:
Sevda Şafîk

Dayê, ma ez marek jehrî me?

Çima dipirsî?

Min zimanê xwe gezkir, loma!




## Ev kîjan demsale?

A. Zivistan
B. Payîz
C. Havîn
D. Çile

## ESKÎMOY



Eskîmoyî li seranserê beravên Gronland û beravên Derya Qeşayî dijîn. Eskîmoyiyan berê neçîrvanî û masîgirî dikirin, wan masîgirî bi qeyîk û kelekên ji çermên fokan dikirin. Eskîmoyî di îgloyan de dijiyan, kozikên ji qeşayê. Ew herwiha di konên ji çermên fokan de diman. Îro piraniya Eskîmoyiyan dest ji wê jiyana nifşên berê berdane û di xaniyan de dijîn.

